HERDEM RASTÎ

# BasNûçe

ISSN 2148-5305

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar: 115 22 - 28 Tebax 2016 basnuce.com




**Doç. Yılmaz Özdil:**
## Navek bo sînemaya kurdî

R16

**Tifaqa bêdeng ya PYD'ê û Şamê xerabû**

# Li Rojava şerê rejim û kurdan destpêdike?



Li Sûrî û Rojava piştî daxuyandina Federasyona Bakûrê Sûrî, bidestxistina Menbîcê û hevdîtinên Erdoğan li gel Pûtîn rewşeke nû yê siyasî û leşkerî rû dide. Herwiha li gor angaştên rayedarên TEV-DEM'ê jî Erdoğan li gel Esad bi rêya telefonê têkilî daniye. Piştî van guherîn û pêşveçûnan tifaqa bêdeng yê di navbera PYD û Rejima Sûriyê de di carekî de alozî û pevçûnan destpêkir.

Li Rojavayê Kurdistanê hefteya borî tifaqa bêdeng a di navbera rejîma Sûriyê û PYD/YPG'ê de bi dawî bû. Hêzên Esed, tevî endamên Hizbullah û Pasdarên Îranê li Heseke êrişê hêzên YPG'ê kirin. Di salên borî de di nakokiyên navbera aliyan de hêzên paramîlîter yên rejimê li Qamişlo û Hesekê çendîn car bi YPG'ê re şer kiribûn, piştî navbeynkariya rayedarên artêşa Sûriyê pevçûn sekinîbûn.

Vê carê rejîma Sûriyê cara ewil li hemberî YPG'ê li navenda bajarê Hesekê bi leşkerên artêşê û firokeyan êriş pêk anîn û di encama êrişên rejîmê de zêdetirî 13 sivîl mirin û bi dehan kes jî birîndar bûn. Herwiha piraniya xelkê Hesekê ji bajar derketin. Ji bilî wê yekê hevpeymana navdewletî jî bo piştgiriya kurdan balafirên xwe şandin Hesekê û bajar ji hêla YPG'ê ve di bin dorpêçê de ye.

R02-3



R08-9

**Lêkolîner Sîpan Seyda:**
## Divê ENKS û PYD li dijî rejimê bibin yek!

"Pêwîstiya rejimê bi rêxistina PYD ya çekdarî nemaye. Wan gelek alîkariya rejîma Esad kir, bi taybetî li Hesekê û deverên din. Di wîr de wek ku dibêjin, PKK'ê ne dixwest li gel hikûmeta Sûriyê dest bi şer bike, lê şer hat destpêkirin. Di wir de gelo rêxistina PYD dikare bi rejîma Sûriyê re şer bike û dikarê wî şerî bidomîne?



R06-7

## Provaya dawî ji bo Musîlê

Di bin fermandariya Serokê RHK'ê Barzanî de operasyona ku li Guwer-Xazirê pêk hat de êniyên Guwer -Xazir bi hev re hatin giredan û 12 gund û 120 kîlometreqare ketin bin kontrola Pêşmergeyan.

Murat Özdemir

# Tifaqa bêdeng ya PYD'ê û Şamê xerabû



Li Sûrî û Rojava piştî daxuyandina federasyonê ji aliyê PYD'ê, bidestxistina Menbîcê û hevdîtinên Erdoğan li gel Pûtîn rewşeke nû yê siyasî û leşkerî rû dide. Tirkiye ku piştî derbeya leşkerî têkiliyên xwe yên têkçûyî li gel Rûsya, Sûriye û Îranê sererast dike, li dijî hewldanên PYD'ê dest bi siyaseteke nû dike. Li gor vê yekê Enqere dest bi hevdîtinên li gel Şamê kiriye û dixwaze rejima Esad, rê nede PYD'ê û ew jî li beramber vê yekê wê piştgiriya xwe ya opozîsyonê qut bikin.

Li gor angaştên rayedarên TEV-DEM'ê jî Serokkomarê Tirkiyê Recep Tayyip Erdoğan hefteya borî li gel Esad bi rêya telefonê têkilî daniye. Piştî van guherîn û pêşveçûnan tifaqa bêdeng yê di navbera PYD û Rejima Sûriyê de di carekî de alozî û pevçûnan destpêkir. Çav li rê ye ku Erdoğan serdana Tahranê jî bike, herwiha balkêş e fermandarekî payebilind yê Îranê hefte ya borî PKK û PJAK'ê wek "terorîst" bi navkiribû. Çavdêr dibêjin Tirkiye li dijî PKK'ê dixwaze Pakta Centoyê careke din zînde bike û hevkariya kevn ya di navbera Îran, Tirkiye û Suriyê careke din biwejîne.

Di vê rewşê de PKK neçar wê berê xwe bide alema Rojhilat û Amerîka. Balkêş e rayedarên Amerîkayê, rejima Sûriyê hişyar kirin ku 'êrişê mutefîkê wan yê dijî DAÎŞ'ê (YPG'ê) neke û Rûsyayê jî di vê mijarê de agahdar kirin. Herçend rayedarên KCK'ê ji bo Îranê aşt bikin, ji hêzên Rojhilat xwestin ku li dijî rejima Tahranê şer nekin û Qamişlo wek bajarekî hemû gelan bi nav kirin jî diyar e, Tahran û Şam wê di encam de sengerên Enqereyê hilbijêrin.

Li Rojavayê Kurdistanê hefteya borî tifaqa bêdeng a di navbera rejîma Sûriyê û PYD/YPG'ê de bi dawî bû. Hêzên Esed, tevî endamên Hizbullah û Pasdarên Îranê li Hesekê êrişê hêzên YPG'ê kirin. Di salên borî de di nakokiyên navbera aliyan de hêzên paramîlîter yên rejimê li Qamişlo û Hesekê çendîn car bi YPG'ê re şer kiribûn, piştî navbeynkariya rayedarên artêşa Sûriyê pevçûn sekinîbûn.

Vê carê rejîma Sûriyê cara ewil li hemberî YPG'ê li navenda bajarê Hesekê bi leşkerên artêşê û firokeyan êriş pêk anîn û di encama êrişên rejîmê de zêdetirî 13 sivîl mirin û bi dehan kes jî birîndar bûn. Herwiha piraniya xelkê Hesekê ji bajar koçkirin. Ji bilî wê yekê hevpeymana navdewletî jî bo piştgiriya kurdan balafirên xwe şandin Hesekê û bajar ji hêla YPG'ê ve di bin dorpêçê de ye. Li gor agahiyan YPG, piştî destpêka pevçûnan ji heremên derdorê gelek hêz şandin bereya Hesekê. Herwiha ji ber sedemên van pevçûnan YPG dibe ku operasyona rizgarkirina bajarê Babê texîrbike. Bab, ji bo bihevre girêdana heremên Efrîn û Kobanê xeleka dawîn ya stratejîk e. Li gor hin şîroveyan rejimê ji bo tevgera YPG'ê ya Babê bide sekinandin li Hesekê ev alozî derxistiye.

Bajarê Hesekê mezintirîn bajarê Rojavayê Kurdistanê ye û tekane parêzgeh e li Rojava. Di destpêka qeyran û şerê navxweyî yê Sûriyê de kurdan dest danîn ser piraniya bajaran û rejîm jî vab bajarên Rojava terikand û îdareya wan radestî PYD'ê kir.

Lêbelê rejîma Esad ji bajarê Qamişlo ku weke paytexta Rojavayê Kurdistanê tê dîtin û Hesekê ku ew jî tekane parêzgeh e û ji mezintirîn bajarên Sûriyê û Rojava ye derneket. Li herdû bajaran jî gelek hêzên rejîmê hene û gelek taxên wan ji aliyê rejîmê ve tên kontrolkirin. Rejîmê hêzên xwe ji bajarên wek Efrîn, Kobanê, Amûdê, Serekaniyê, Derikê bi giştî vekişand, bajarên wek Azez, Menbîc, Cerablus, Bab, Mare jî ketin destê opozîsyonê û paşê jî DAÎŞ'ê dest danî ser van bajaran. Rejima Esad heta demên dawîn, li Heleb û Hesekê jî tevî hêzên YPG'ê li dijî DAÎŞ'ê şer dikir.

Ji bilî wê yekê tû hêzên leşkerî yên Esad li Rojava ne man û tifaqeke bêdeng bi PYD a ku pêşengiya Rêveberiya Rojava dike re çêkir. Lê tifaqa di navbera herdu aliyan de dem bi dem têk diçe. Nîsana îsal li Qamişlo dîsa di navbera milîsên Bereyaniya Niştîmanî (Dîfa el Wetenî) yên ser bi rejîmê ve û asayîşa PYD'ê ve pevçûnan rû dabûn di encamê de dîsa rejîmê sîvîl kiribûn hedef û hejmarek xelkê sivîl canê xwe ji dest dabûn. Li Hesekê jî beriya niha aloziyan rû dabûn. Di sibata 2015'an de milîsên Hizbulllaha Lûbnanê û milîsên rejimê êrişî hêzên kurd kiribûn. Herwiha li taxa Ezîziyê ya Hasekê de di navbera YPG'ê û leşkerên rejima Esad zêdetir ji du mehan pevçûn pêk hatibûn û di encama wan pevçûnan de 34 şervanên YPG'ê jiyana xwe ji dest dabûn.

Lêbelê cara yekem e ku rejîma Sûriyê tevî leşkerên artêşê û balafiran rasterast êrişî hêzên YPG'ê dike û heremên kurdan dike armanc. Sêşema hefteya derbasbûyî li gor agahiyên berdest milîsên ser bi rejîmê ve êrişî bendên kontrolê yên asayîşa girêdayî PYD'ê kir û pevçûnan rû da. Xelkê sivîl yê li herêmê şandekî ji rûspiyên herêmê ji bo ku agirbestek pêk were û şer bi dawî bibe bi herdu aliyan re hevdîtin kirin û şer sekinî. Lê agirbestê zêde dom nekir û dijwartirîn pevçûn di navbera asayîş û milîsên rejîmê de rû dan. Piştî destpêkirina şer dîsa şandên sivîl navbeynkarî kirin û dîsa şer sekinî, vê carê jî agirbest bi ser neket û roja din rejîma Esad ku leşker û milîsên wê di Hesekê de asê mane, bi balafirên şer êrişî binkeyên YPG'ê û taxên Hesekê kir. Bikaranîna balafiran bo cara yekem ji aliyê rejîmê ve li dijî kurdan cidiyet û dijwariya şer nîşan dida. Serfermandarê rejima Sûriyê, derbarê pevçûnan de PYD'ê sûcdar kir û got, ew xelkê acis dikin û dest datînin ser malên dewletê!

## DYA'yê balafir ji bo kurdan şandin

Wezareta Parastinê (CENTCOM) ya Dewletên Yekgirtî yên Amerîkayê (DYA) ku pêşengiya Hevpeymana Navdewletî dike jî li ser şerê Hesekê daxuyaniyek da û ragihand ku wan ji bo parastina hêzên xwe yên li Hesekê û piştevaniya kurdan balafirên xwe şandine. Amerîka û hêzên kurdî ev heyameke bi hevre di nav kordînasyonê de operasyona bi rêve dibin û HSD weke beşekî hevpeymanê tê dîtin. Li gor agahiyên Rewangeha Mafên Mirovan ya Sûriyê (SOHR) di encama êrişên rejîmê de herî kêm 13 sivîl mirin. Li hêla din êriş li taxên Neşwa Şerqî, Mesakin, Benzînxaneya Merşo û suka bajar giran bûn û li gor zanyariyên ku ji çavkaniyên YPG'ê hatine bidestxistin, asayîşa Hesekê ya girêdayî PYD'ê li wan deverên şer lê dijwar bûyî pêşve çû milîsên rejîmê ku tenê di navenda bajar de hene, asê kirin. Ji xwe piştî vê pêşveçûna hêzên kurdî rejîmê serî li balafiran da û taxên Hesekê yên aliyê bakur bordûman kir. Li gor agahiyên çavkaniyên YPG'ê di encama şerê Hesekê de zêdetirî 32 milîsên rejîmê hatin kuştin û 33 milîs jî dîl hatin girtin.

## Hevsengiyên li herêmê digûherin, tifaqa dijî kurd berfireh dibe

Li ser rûdana pevçûnan jî hêzên kurdî radigihînin ku milîsên rejîmê êrişî xalên kontrolê yên wan kirine û rejîm bi kiryarên xwe dibe sedem ku alozî rû bidin. Berdevkê rejîma Esad jî ku daxuyaniyeke fermî belav kir li ser şerê Hesekê, îdda kir ku asayîş hewl dide ku kontrola xwe ya li bajar berfireh bike û weke sedema rûdana pevçûnan aliyê kurdî tawanbar kir. Lêbelê di esasê xwe de rûdana şerê di navbera herdu aliyan piştî nêzîkbûna Tirkiye, Sûriye û Îranê weke rasthatinek nayê dîtin. Ev heyameke hikûmeta Tirkiyê di polîtîkaya xwe ya Sûriyê de guhertinekê pêk tîne ku ji destpêka şer heta niha li rex opozîsyona Sûriyê cih digirt û bi tu awayî hebûna Esad a li ser hikm qebûl nedikir. Lêbelê piştî bi Rûsyayê re hevdîtin çêbûn û pêwendî hatin dûristkirin, Serokwezîrê Tirkiyê Yıldırım eşkere kir ku ew dixwazin bi Sûriyê re jî bikevin nav têkiliyan. Di vê çarçoveyê de tê ragihandin ku Tirkiye, Rejîma Esad û Îranê civînek pêk aniye û li ser hin xalan lihevkirine. Ji xwe ji destpêka qeyranê heta niha Tirkiye yekgirtina Sûriyê weke şert daniyê ber civaka navdewletî û destkeftî û rêveberiya kurdan li Rojava qebûl nake. Helwesta Îranê jî ya li hemberî kurdan ku ew bi xwe bi awayekî fîilî di nav şer de ye û bi her cure alîkariyan piştevaniya Esad dike, ji ya Tirkiyê ne cuda ye. Rejîma Esad jî herçiqas heta êrişên li ser Hesekê li hemberî kurdan di bêdengiyekê de be jî bi her awayî diyar dike ku ew rêveberiyeke kurdan qebûl nake û federaliya ku ji aliyê PYD'ê ve hatiye ragihandin deryasayî û rewşeke defacto dibîne. Rûsya jî heta niha bi balafirên xwe û piştgiriya xwe ya leşkerî nehêla ku rejîma Esad bikeve û helwesta wê ya li hemberî kurdan ne ji ya rejîmê cuda ye û ew bi xwe jî yekgirtina axa Sûriyê diparêze. Wek sedema aloziyan ev tê dîtin û sedema din jî bilindbûna egera pêkvegirêdana herêmên kurdî û avabûna korîdora kurdî tê dîtin.

## Şerê Hesekê piştî rizgarkirina Menbîcê destpêkir

Operasyona Menbîcê hefteya borî piştî 73'ê rojan bi serkeftina HSD'ê û paqijkirina DAÎŞ'ê ji herêmê bi encam bûbû. Bi kontrolkirina Menbîcê dûrahiya di navbera kantonên kurdî de kêmtir bûbû û HSD'ê vê carê ji bo bi temamî herêmên kurdî bi hev ve girêbide û dorpêça li ser Efrîn û Rojava bişkîne ket nav amadekariyan. Di vê çarçovê de Encûmena Leşkerî ya Babê hat avakirin û niha jî amadekarî tên kirin ku Operasyona Babê jî destpêbike û herêmên kurdî pêkve werin girêdan. Dewletên herêmî jî û rejîma Esad jî li hemberî vê pêşveçûna hêzên kurdî aciz in. Ji ber ku eger Bab jî were girtin hemû herêmên Rojava digîjin hev û herem bi giştî

dikeve jêr destê PYD'ê. Erişên rejîma Sûriyê jî bo ser bajarê Hesekê piştî vê pêngavê, weke rasthatinek nayê dîtin.

Hêza leşkerî ya rejîma Esad zêdetir li Qamişlo heye. Li bajêr balafirxaneyeke leşkerî, nêzîkî 5 hezar leşker, mîlîs û endamên Hizbullaha Lubnanê hene. Herwiha nêzîkî 5 hezar mîlîsên eşîrên hevkarê rejîmê ji li Qamişlo hene. Serokwezîrê Sûriyê hefteya berê serdana Qamişlo kiribû û serekêşîrên ereb yê heremê re rûniştibû û ji wan daxwaz kiribû ku li dijî YPG'ê çek hilgirin. Derdora Hesekê bi giştî di bin kontrola YPG'ê de ye û li bajêr li taxên erebnîşîn de tenê hin komên milîsên rejimê hene. Rejîm bi van êrişên dawiyê dubare nîşan dide ku helwest û polîtîkaya xwe ya ku li ser înkara kurdan avakiriye negûhertiye û dema fersenda xwe dît mîna şerê Hesekê dê hêz û balafirên xwe li dijî kurdan bikar bîne.

Rojnamgerên ku di cih de bûyeran dişopînin, rayedarên Rêveberiya Rojava û Nûnerên ENKS'ê şerê Hesekê, vegera Pêşmergên Roj, helwesta PYD'ê, êrişên rejîmê û rewşa dawîn ya herêmê ji BasNûçe'yê re nirxandin.

**Dr. Evdilkerîm Cezîrî: Milîşeyên Îranê û Hizbûllahê êrîş dikin**

Ji Desteya Parastinê ya Kobanê Dr. Evdilkerîm Cizîrî di derbarê şerê Hesekê de ji BasNûçe'yê re axivî. Cezîrî êrişên rejîmê yên li ser Qamişlo bibîr xistin û got ku di encama her destkeftî û pêşveçûna wan de rejîm di bin bandora Tikriye û Îranê de êriş dike û wiha axivî: "Rejîm bi awayekî hov êriş dike û balafiran jî bikar tîne. Xelkê sivîl dike armanc û xelk tê koçberkirin ji herêmê. Mumkûn e êriş belavî Qamişlo jî bibin. Ev ji ber destkeftiyên dîrokî û bi taybet jî rizgarkirina Menbîcê ku gaveke bo Efrîn û Kobanê û stratejîk e, ev êriş pêk tên û rejîm di nav tirsê de ye. Herwiha Tirkiye û Îran jî ketine nav tirsê û ji destkeftiyên kurdan ditirsin. Dema kurd pêşve çûn planên xwe têxin meriyetê. YPG û asayîşa Rojava di nav şer de ne. Milîşeyên Îranê Hîzbullah jî êriş dikin. Di encama van êrişan de jî dîsa destkeftiyên kurdan zêdebûn, gelek navendên wan ketine destê me, moralê xelkê me gelek bilind e. Em di Sûriyê de aktorekî girîng in. Me amadekariyên xwe baş kirine."

**"Serkeftina me, mirina rejîmên şovenî ye"**

Cezîrî diyar kir ku serkeftina wan mirina rejîmên şovenî ye û got, " Em beşekî hevpeymana navdewletî ne. Me her amadekarî kirine ku dîrok careke din dubare neke. Em nebûn beşek ji şerê hizbî û nijadî. Me xeta sêyem hilbijart û ji bo wê yekê helbet êrişên wan jî zêde dibin. Di aliyê siyasî de jî leşkerî de jî em xwedî hêzekî mezin in. Tu kes nikare me têk bibe û tune bike. Hêza rejîmê di Hesekê de zêde nîne. Ji sedî 90-95'ê bajarê Hesekê di bin kontrola YPG'ê de ye. Rejîm di nav astengiyan de ye asê bûye û herwiha têk diçe ku herî dawîn balafirên xwe jî bikar anî. Rejîm lawaz e."

**"Derxistina rejîmê ji Rojava ne di berjewendiya xelkê de ye"**

Evdilkerîm Cezîrî li ser îddayên ku Sotoro ya suryanî, êrişî kurdan kiriye got ku 'du Sotoro hene û Sotoroya ku li gel rejîmê ye ew nizanin ku bê ka wan jî êriş kiriye yan ne.' Cezîrî dîsa li ser îddayên ku balafirên Rûsyayê jî di êrişan de cih girtiye got ku wan ev agahî piştrast nekiriye û diyar kir ku eger Rûsya rolekê bilîze ev wê bo rawestandina şer be. Cezîrî li ser derxistina rejîmê ji Heseke û Qamişlo jî ragihand ku derxistina wan hêsane lêbelê ew vê yekê di berjewendiya herêmê de nabînin. Cezîrî got ew ê kontrola xwe berfireh bikin û rejîm wê bersiva xwe di asteke bilind de bibîne.

**Cîgirê Serokwezîrê Kobanê Berkel: Piştî hevdîtinan, êrişan destpê kir**

Cîgirê Serokwezîrê Kobanê Xalîd Berkel balkişand ser rizgarkirina Menbîcê û got ku ji destkeftiyên kurdan aciz in û bi van êrişan dijberî û dijminahiya xwe ya li hemberî Rojava nîşan didin. Berkel wiha axvî: "Ji xwe rejîm di destpêkê de jî êrişên xwe yên li ser xelkê sivîl li tevahiya Sûriyê didomîne û ev çend roje li ser Hesekê bombeyan dibarîne. Di demên dawîn de Esad bi wan aliyên dijberên Rojava re hevdîtin çêkirin û piştî wê êrişan destpê kir. Dixwazin serkeftina Rojava bi bin bêxin. Berê jî dema devere dihat rizgarkirin, şerê taybet didan destpêkirin."

**"Hêza rejîmê di Rojava de zêde nîn e"**

Berkel di dewama axaftina xwe de diyar kir ku şerê Hesekê ne di berjewendiya herdu aliyan de ye û ragihand ku hêza rejîmê tune ye. Berkel wiha pêde çû: "Ev êriş ne di berjewendiyên herdu aliyan de ne. Hêza rejîmê di Rojava de zêde nîn e. Ev êriş ne ji bihêzbûna wan tên. Dixwazin tenê xwe nîşan bidin. Ji bilî wê yekê em qebul bikin an nekin hê jî saziyên rejîmê li herêmê de hene. Rewatiyeke wan berdewam dike. Nasname, pasaport û gelek tiştên din hene ku rejîm hebûna xwe berdewam dike herçiqas sembolîk be jî. Lêbelê rejîm ji aliyê leşkerî ve ne bihêz e. Hebûna rejîmê ji tunebûna wê bo niha baştir e. Divê rêkeftinek bê çêkirin û ev şer li ser pêşeroja herêmê ne be cihê metirsiyê."



## ENKS'ê dîsa daxwaza vegera Pêşmergeyên Roj kir

Li aliyê din heta niha PYD'ê helwesteke erênî nîşan neda ye ku Pêşmergeyên Rojava ku hejmara wan ji 10 hezarî derbas kiriye, derbasî Rojava bibin. Ev helwesta PYD'ê dibe sedem ku rîsk li ser Rojava û xelkê sivîl çêbibe û siberoja Kurdistana Rojava têxe bin metirsiyê. Encûmena Niştimaniya Kurd li Sûriyê (ENKS) di daxuyaniya xwe ya li ser şerê Hesekê de ku êrişên rejîmê şermezar kir de jî dîsa daxwaza derbasbûna Pêşmerge kir, lêbelê heta niha PYD bi erênî nêzîk nebûye.

**Nûnerê ENKS'ê yê Tirkiyê Osman Mislîm: PYD'ê berê xwe yê biratiyê neda me**

Nûnerê Encûmena Niştimaniya Kurd li Sûriyê (ENKS) yê Şaxa Stenbolê Osman Mislîm di derbarê vegera Pêşmergeyên Roj, êrişên rejîmê û helwesta PYD'ê ya li hemberî kurdan de ji BasNûçe'yê re eşkere kir ku ew dixwazin hêzên kurdî, layên kurdî bigihijin hev û wiha dewam kir: "Bergiriyê bi hev re di ber welat de bikin. Lêbelê PYD'ê berê xwe yê biratiyê neda me. Rêkeftin bi rêve nebirin. Astengî çêkirin, destdirêjî kir, dest bi girtinê kir, rê nedan ku em ji wan re bibin alîkar. Me destê xwe dirêj kir, lêbelê wan destê xwe dan rejîmê. Herkesek vê dizene." Mislîm diyar kir ku wan her tim hişyarî da ku bawerî bi rejîmê nabe û wiha axivî: "Niha jî rejîm li Rojava dixe û êrişî Rojava dike. Di vê rewşê de yê redive xelkê kurd e û ev xetereyek e. Tirsa me ew e ku ev jî planek be di navbera herdu aliyan de û encama wê jî gelê kurd dikşîne xelk herêma xwe diterikîne. PYD bi zelalî tevnagere. Çima rejîm ku dikare bê derxistin, hê jî di Rojava de ye?"

**"Divê Pêşmerge demildest derbas bibe û Rojava biparêze"**

Mislîm eşkere kir wan ji Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, DYA û PYD'ê bi xwe jî daxwaz kiriye ku Pêşmergê Roj veger û herêma xwe biparêze wiha got: "Niha hejmara Pêlmerge gihiştiye 10 hezaran û eger derbas bibin di maweyekî kurt de ev hejmar wê bigihije 50 hezaran. Em dixwazin welatê xwe biparêzin. Di nav hêzên siyasî û leşkerî yên li Rojava de PYD herkesê bo xwe weke hevalbend dibîne lêbelê xwe ji kurdan dûr dixe. Kurdan qebûl nake. Me di dema Kobanê de jî daxwaz kir ku em bên şer bikin lêbelê dîsa tevî ku Kobanê li ber ketinê bû destûr neda got ez qebûl nakim. Em a niha jî amadebûna xwe radighînin. Em destê xwe dirêjî wan dikin. Lê ew bersievek erênî nadin. Em hêvî dikin ku ji vê helwesta xwe ya şaş vegerin û destê me yê biratiyê bigirin."

**Rojnameger Ebdo: Derdora bajar hemû di destê hêzên kurdî de ye**

Rojanameger Dara Ebdo jî li ser êrişên rejîmê ji rojnama me re axivî û destnîşan kir ku rejîma Esad bi mûşek û balafiran êriş dike û got, "Heta niha YPG bi pêş ketiye. Bajarê Hesekê hatiye dorpêçkirin ji aliyê YPG'ê ve. Hêza Rejîmê di navenda bajêr de heye weke çarçoveya ewlehî. Di têketina bajar de jî hin hêza wan hebû. Lêbelê ew hêzên rejîmê pişta xwe bi ya çiyayê Kewka ve girê dide. Herwiha rejîm baweriya xwe bi hêza topa ya li çiyayê kewka ve tîne û ji xwe balafirên wan jî hene. Rejîm bi van xûrt e. Lêbelê hêza rejîmê di Hesekê de gelekî bîçûk e. Derdora bajar hemû di destê hêzên kurdî de ye. Pêwendiya rejîmê qût bûye."

Ebdo diyar kir ku hin hewldan hene ku şer were rawestandin. Ji ber ku piraniya xelkê sivîl ji bajar derketiye. Gelek tax hatine valakirin û wiha axivî: " Ji ber wê yekê hin alî hene ku dixwazin bikevin navberê û vî şerî bidin sekinandin. Lê hindî ku rejîm êriş dewam bike YPG şer ranawestîne. Ji xwe YPG di vî şerî de serkeftiye, ne rejîm. YPG'ê derdora Hesekê bi temamî dorpêç kiriye û rejîm tenê di nava bajar de maye. Egera berdewamkirina êrişan heye, lê YPG xwe nade paş."

**Rojnameger Necîm: Şerê Hesekê girêdayî geşedanên ser erdê ne**

Rojnameger Kemal Necîm jî ji BasNûçe'yê re got ku liv û tevgera rejîma Sûriyê li herêmên Rojava û bi taybet êrîşên dawiyê li dijî taxên sivîlan girêdayî geşedanên ku ser erda Sûriyê bi giştî dibin e û wiha pê de çû: "Weke tê zanîn ku rejîma Sûriyê tevî 5 salên şer û pevçûnên giran, wêranî û kambaxiyên mezin jî, hîna xwediyê wê hişmenidya xwe ya nijatperest e û tu mafên gel û netewên Sûriyê napejirîne. Di vê navberê de li Rojava û hin herêmên bakurê Sûriyê modeleke xwerêveberiyê hate pêşxistin, her çiqas reîm li dijî vê rêveberiyê ye jî lê ji ber gelek sedemen li hember wê ne kete nava şer. Di mehên dawiyê de rewş û hevsengî hatin guhertin. Li ser erdê hêzên Rojava pêşve çûn û hin herêm bidest xistin. herî dawiyê jî rizgarkirina bajar û gundewarên Minbicê gelek guherîn bi xwe re anîn û rê li ber yekîrina kantonên Rojava vekir her wiha xebatên ji bo avakirina Federaliya Rojava û Bakurê Sûriyê bileztir kir."

Necîm diyar kir ku hêza rejîmê ku li herêmên Rojava şer bide destpêkirin kêm e û axaftina xwe wiha bi dawî kir: "Baregehên wê yên leşkerî li herêmê tune ne, ya li Qamişlo di bin dorpêça YPG`ê de ye û dê rejîm nikaribe bikar bîne. Her wiha rewşa leşkerî û siyasî û abûrî ya rejîmê têrî nake ku vî şerî bike. Hêza Rojava jî têra xwe mezin bûye ku bersiva êrîşên rejîmê bide û bişkîne jî. Lewma bi nêrîna min dê ev şer li Hesekê bi dawî bibe."

**Rojnameger Hiso: Eger ENKS û TEVDEM bibin yek kes nikare wan li ber çav negire**

Rojnameger Îdrîs Hiso jî destnîşan kir ku li Hesekê şer tê kirin li dijî hebûna kurdan û got ku li Heseke jî mîna bajarê Mûsile dixwazin bajêr ji kurdan vala bikin. Hiso ragihand ku tenê du derfet li pêşiya Rêveberiya Xweser hene ku xwe ji vê rewşa xirab rizgarbike û ev derfet jî wiha rêz kirin,yek, eger Hevpeymaniya Navdewletî piştevaniya wan bike û li hêz û firokeyên rêjîmê bide û parastina deverên kurdnîşîn bike. Ev yek jî ne zelal e ka heta kîjan radeyê Tirkiyê, Sûriyê û Îran li ser pirsa kurdî çi astê ji kurdan re datînin li Rojavayê Kurdistanê. Eger TEVDEM û ENKS'ê karibin li ser nerînekê li hevbikin û bikaribin hêza xwe ya çekdar bikin yek wê demê wê kurd hejmrek gelekî bi hêzbe û ti alî nikare wan paşgûhbike."

# Provaya dawî ji bo Musîlê

Di bin fermandariya Serokê RHK'ê Barzanî de operasyona ku li Guwer-Xazirê pêk hat de êniyên Guwer -Xazir bi hev re hatin giredan û 12 gund û 120 kîlometreqare ketin bin kontrola Pêşmergeyan. Çavdêr amaje li ser wê yekê dikin ku Pêşmerge gihane ber deriyê Mûsilê û ji bo operasyona mezin amadekariyan dikin.

**Siwar Bedirxan**

Di bin fermandariya Serokê Rêberiya Herêmê Kurdistanê (RHK) û Serfermandarê Pêşmergeyan Mesûd Barzanî, Hêzên Pêşmerge li Xazir-Guwerê hefta borî operasyoneke berfireh pêk anî û herêm ji DAIŞ'ê hat rizgarkirin. Ew serkeftina ku wek provaya Operasyona Mûsilê tê binavkirin, li Iraqê û cîhanê gelek deng veda. Pêşmerge di operasyonê de 12 gund û 120 kîlometrekarê ji destê DAIŞ'ê derxist. 8 hezar Pêşmerge di operayonan de cih girtin. Hêzên Hevpeymanî jî bi firokên şer piştgiriya hewayî dan hêzên Peşmerge. Di operasyonê de 120 kîlometrekareqare ket bin kontrola Pêşmergeyan û bi vî awayî êniyên Guwer û Xazir bi hev hatin giredan. Pêşmerge bi vê operasyonê, navenda DAIŞ'ê ya Mûsilê li Iraqê ji aliyên rojhilat, rojava û bakûr dorpêçkirin. Baregehên Pêşmergeyan 15-20 kîlometrekare ji dûrî Mûsilê ne.

Ji aliyê din ve qeyrana Bexda û Hewlerê ya ji sala 2014'an heye bi Operasyona Xazir-Guwerê dîsa hat rojevê. Piştî ku Pêşmerge di operasyonê de bi serketin, Serokwezîrê Iraqê Haydar Îbadi diyar kir ku bila Hêzên Pêşmerge di êniyên xwe de bisekînin û derbasê aliyê Mûsilê nebin. Berdevkê Hikûmeta RHK'ê Sefin Dizayi li dijî gotinên Haydar Îbadi bi awayek tund nerazîbûna xwe nîşand da û eşkere kir ku Hêzên Pêşmerge ji herêmên kurdên ku li wîlayetê Nînowayê ye û ji destê DAIŞ'ê rizgarkirine, dê dernekevin û Pêşmerge heta ku hemû herêmên kurd bi tevahî rizgar bikin, dê operasyonanên xwe bidomînin.

**Fermandar Eziz Weysi: Em ê heta sînorên xwezayî herin**

Fermandarê Giştî yên Hêza Pêşmergeyên Zerevanî Ezîz Weysî, bi awayek tund nerazîbûna xwe li dijî daxuyaniya Îbadî nîşan da. Weysî eşkere kir ku hewce ye di serî de Îbadi, hemû rayêderên Iraqê rêz li têkoşîna Pêşmergeyan li dijî DAIŞ'ê bigirin. Weysî da zanîn ku operasyona dawî ya Xazir-Guwerê bi koordînasyona Hewler û Bexdayê pêk hatiye û Wezîrê Beravaniyê Iraqê û Wezîrê Pêşmergeyên RHK'ê di têkoşîna li dijî DAIŞ'ê de bi hev re hemaheng in û Pêşmerge hemû fermanan ji Serfermandarê Pêşmergê û Serokê RHK'ê digre.

Weysî amaje li ser wê yekê jî kir ku ti erka Îbadî tune ye ku di derbarê Pêşmerge de biaxive û wisa pê de çû: "Têkoşîna ku em li dijî DAIŞ'ê dimeşînin, li holê ye, têkoşînek hevpar e. Operasyonên paqijkirina DAIŞ'ê ji xaka Kurdistanê berdewam dikin. Heta ku em xaka xwe ya dawî ji destê DAIŞ'ê digirin, em ê şerê xwe bidomînin. Rayedarên Iraqê, ji ber serkeftinên Pêşmerge yên li dijî DAIŞ'ê aciz in. Dibe ku Hevpeymana Navneteweyî, alîkariya Arteşa Iraqê bikin. Lê bi tenê Pêşmerge bi awayekî cidî li dijî DAIŞ'ê têdikoşe."

Weysî da zanin ku wê Pêşmerge xaka Kurdistanê ya di çarçoveya xala 140'î ji destê DAIŞ'ê derxe. Herwiha ew ê heta sînorên xwezayî yên Kurdistanê pêşveçûna xwe bidomînin. Weysî li aliyê din tekez kir ku wê di demekî nêzîk de Operasyona Mûsilê dê destpêbike. Pêşmerge ji bo operasyonê amade ye; lê Arteşa Iraqê ne amed ye: "Heta ku sînorên xwezayî yên Kurdistanê û herêmên kurdan ku di xala 140'î de jî cih digirin, bi dest bixin, em dê têkoşîna xwe berdewam bikin. Beriya 1925'an, wê demê hîn jî Iraqa modern nehatibû sazkirin, sînorên Kurdistanê diyar bû. Ji ber ku carek din gelên kurd bi xeterî û qirkirinê rûbirû nemînin, em ê hemû rêgiriyan bikin."

**YNK û PDK li hev dicivin**

Serokê Dîwana RHK'ê Fuad Hûsên, ku hefteyên borî ji bo çareserkirina qeyrana siyasî û serxwebûna referandûmê bi partiyên siyasiyan re hevdîtin pêk dianî û niha ji wan hevdîtinan encamên erênî tên bidestxistin. Tê hêvîkirin ku Nûnerên Partiya Demokratîk a Kurdistanê (PDK) û Yekîtiya Niştimaniya Kurdistanê (YNK) di nava heftê de dê hevdîtinekê pêk bînin. Li gorî agahiyên çavkaniyên RHK'ê PDK'ê ji YNK'ê re dê pêşniyar bike ku peywîra serokatiya parlamentoyê partiyên îslamî werbigirin. Ji aliyên din ve tê axaftin ku Serokê Tevgera Goran Newşîrwan Mistefa ji Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî re peyam şandiye û di peyama xwe de diyar kiriye ku Tevgera Goran ji çareserkirina kêşeyan re amedeye û ji bo parlamento aktîv bibe û hikûmet bê damezandin, Barzanî gavan biavêje.

**Pîrê: PDK û YNK ji bo çareseriyê bi biryar in**

Endamê Polîtbûroyê YNK'ê Sadî Ehmed Pîrê, beriya PDK û YNK'ê de ku di nava hefteyê de dê pêk bê, zanyarî dan BasNûçe'ye û rave kir ku PDK û YNK wê derbarê çareserkirina qeyrana siyasî û aktîvkirina parlementoyê de lihev kirine. Pîre îddîaya ku rayedarên DYA'yê jî ji bo çareraskirina qeyrana siyasî ya Başûrê Kurdistanê di dewre de ne jî piştrast kir. Pîrê wiha got: "Nûnerên DYA jî ji bo rêkeftinê, navbeynkariyê dikin Lê divê em lihev bên. Heger em lihev bên, ne hewce ye ji bo rêkeftina me kesên din navbeykariyê bikin. YNK bi biryar hewl dide ku partiyên siyasî lihev bên û kêşe bên çareserkirin."

Barzanî: Tenê rêyek me heye

Ji aliyê din ve Serokê RHK'ê û Sekreterî Giştî yê PDK'ê Mesûd Barzanî bi boneya 70'ê saliya PDK'ê peyama pîroziyê belav kir û diyar kir ku li pêşiya kurdan tenê opsîyonek heye û referaduma serxwebûne dê pêk bê û kurd dikarin çarenûsa xwe tayîn bikin û ev heqe wan e. Barzanî eşkere kir ku Kurdistan di hemû prosesan de mafên mirovan, pirdengî, biratî û jiyana hevpar parastiye û ji bo wan jî rolek mezin girtiye ser xwe: "Ji bo berjewendiya Kurdistanê, li bilî dijwariyan, fersend jî peyda dibe. Ji bo çareserkirina kêşeyan hertim ji bo gotûbejan deriyê PDK'ê vekirine." Herwiha di peyamê de hat raginahdin ku divê endamên PDK'ê bi prensibên rast û rêya Mele Mustafa Barzanî de xebatên xwê bidomînin. Barzanî wisa pê de çû:" Di 70 saliya PDK'ê de gelê Kurdistanê bi awayek bibiryar dixwazin çarenûsa xwe tayîn bikin û ji bo çareserkirina kêşeyan ji bilî serxwebûnê rêyek dî tuneye. Ji ber vê di tayînkirina çarenûsa gelên kurd de herî zêde mafê Pêşmerge heye. Ji ber ku bi can û xwîna xwe Kurdistanê diparêzin."

Barzanî diyar kir ku şer ji bo serxwebûnê kêşe û xeter nîne. Serxwebûna Kurdistanê dê dawiya şer bîne. Barzanî derbarê qeyrana siyasiya RHK'ê jî axivî û pêşniyar kir ku divê hemû alî li hemberî gel bi hesasiyet û berpirsyarî tevbigerin. Hemû gelên Kurdistanê di têkoşîna li dijî DAIŞ'ê de piştevaniya Pêşmerge kir û Hêzên Pêşmerge jî bi can û milkê xwe têkoşiyan.



# Li Hewlêrê dîplomasiya Mûsilê





Piştî ku Pêşmerge li Operasyona Xazir-Guwerê serkeftî bû li Hewlerê jî tevgera dîplomasiya zêde bû. Ji bilî Welatên Kendavê nûnerên leşkerî û siyasî yên Almanya û DYA'yê bi Serokê RHK'ê li Hewlerê hevdîtînan pêk anîn. Ji aliyê din ji ber ku Hîndîstan pewendiyên xwe yên bi RHK'ê pêş bixe û ji bo hevkariyê li Hewlerê konsolxane vekirin.

**Senator Booker: Wê alîkariyên me bidomin**

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî pêşwazî li hin senator û leşkerî û siyasî yên DYA'yê kir. Li gorî daxuyaniya Ofîsa Serokatiya RHK'ê; Mesûd Barzanî ji Partiya Demokrat a DYA'yê senatoran, Endamên Delegasyona Ewlehî û Siyasî û Balyozê DYA'yê li Iraqê Stuart Jones, Konsolosê DYA'yê li Helwerê Ken Grosss û hin diplomatên leşkerî û siyasî re hevdîtîn pêk anî. Di Serokatiya Senatorê Partiya Demokrat Cory Booker, desteya amerîkî hatin cem Barzanî.

Sentor Cory Booker derbarê bicihanîna hêviyên gelên Kurdistanê û pêdiviyên Pêşmerge de soz da û diyar kir ku di vî warî de wê karên dîplomatîk dimeşînin. Barzanî jî da zanîn ku bi alîkariya DYA'yê Hêzên Pêşmerge ewqas baş li hemberî DAIŞ'ê têkoşiyane û bi hevkariya pisporên leşkerên DYA'yê efsaneya DAIŞ'ê têk çûye.

Barzanî, qirkirin, sosret û eşên ku gelê kurd di dîroka Kurdistanê û Iraqê de jiyanê bibîrxist û eşkere kir ku kurd xwediyê çanda xweşbinî û jiyana hevpar in û ji ber vê yekê dê ti car di nav wan de nakokiyên etnîk-mezebî dernekevin. Barzanî diyar kir ku wan deriyên xwe ji penbaran re jî vekirine. Ji ber ku ew peywîrek mirovayetî ye û di vî warî de alîkariyên ku Hikûmeta Iraqê û civaka navnetewî ji RHK'ê re dikin, gelekî kêm in. Kêşeya kurd li Rojhilata Navîn meseleyek gelek girîng e. Kurd dixwazin bi rêyên aştî û bîratî çarenûsa xwe diyar bikin.

**Barzanî Pêşwaziya konsolê Almaya kir**

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî di nava heftê de bi Balyozê Almayayê li Bexdayê Franz Josefê û desteya ku bi wî re jî civiya. Barzanî, Konsolê Almayayê li Bexdayê Franz Josef û desteya bi wî re li Ofîsa Serokatiya RHK'ê li Selahaddinê qebûl kir. Di hevdîtînê de rûdanên herêmê, têkoşîna li dijî rexistina DAIŞ'ê û pewendiyên Almanya û Kurdistanê hatin axaftin. Balyozê Almanya Franz Josef diyar kir ku rûdanên aborî, siyasî û serkeftinên di têkoşîna li dijî DAIŞ'ê de li RHK'ê ji nêzve dişopînin û hevkariya gelê kurd û Almanya dê bidome. Herwiha piştivanîkirina RHK'ê jî dê bidomînin.

Barzanî jî rave kir ku bi alîkariya Almanyayê Hêzên Pêşmerge li dijî DAIŞ'ê serkeftinên baş bi dest xistiye. Di hevdîtînê de li ser Operasyona Mûsilê jî hat sekinandin. Herwiha Barzanî bal kişand ser demografiya wîlayeta Nînowa û da zanîn ku divê beriya operasyonê ji bo ewlehiya gelên êzîdî û mesîhî bergirî bên girtin û hewce ye ji bo vê jî peymanek bê îmzakirin.

**Almanya ji bo Pêşmerge 70 ton çek şand**

Ji aliyê din ve hat ragihandin ku Almanya di çarçoweya têkoşîna li dijî DAIŞ'ê ji Pêşmerge re 70 ton çek şandiye. Wezareta Beravaniya Almanyayê daxwuyand ku; di 16'ê Tebaxê de 70 ton amûrên leşkerî gihandine Hewlerê. Di daxuyaniya wezaretê de hatiye gotin ku 500 tifing, milyonek gule, 100 mûşekên antîtank 3 wesayîtên zerîpoş ji Pêşmerge re hatine şandin. Almanya ku di nav Hevpeymana Navdewletî de cih digre, gelek caran çek şandiye ji Pêşmerge re.

**Nûnerê Kûweytê hat Hewlêrê**

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, Nûnerê Kuweytê li Iraqê Xesan Elziwawi û Balyozê Kuweytê Dr. Emer Elkendrî jî qebûl kir. Balyozê Kuweytê Dr. Emer, silavên hikûmeta xwe ji Barzanî re got û diyar kir ku welatê wî rûdanên herêmê ji nêzîk ve dişopîne û ji bo alîkariyên ku RHK'ê ji penaberan re kiriye, spasiyên xwe pêşkeşê Barzanî kir. Ji aliyê din ve ji bo hevkariya ku bi RHK'ê re dikin, kefweşiyên xwe parve kirin. Barzanî ji bo serlêdana nûnerên Kûweytê kefxweşiya xwe eşkere kir û derbarê têkoşîna li dijî DAIŞ'ê de agahî da wan.

**Barzanî bi Nuceyfî re Operasyona Mûsilê axivî**

Serokê RHK'ê Mesûd Barzanî, bi Serokê Bloka Muttehudunê Usame Nuceyfî re jî hevdîtînek pêk anî û derbarê Operasyona Mûsilê de axafî. Li gor daxuyaniya Serokatiya RHK'ê Usame Nuceyfî ji bo serkeftina ku Pêşmerge di Operasyona Guwer-Xazirê de di dest xistiye, piroziyên xwe ji Barzanî re pêşkeş kiriye. Aliyan di hevîdîtînê de di derbarê rewşa siyaseta Iraq û herêmê, wîlayeta Nînowa û di têkoşîna li dijî DAIŞ'ê de li ser êniyên Iraqê axivîne. Herwiha li gorî daxuyaniyê; asta amedekariya Operasyona Mûsilê, parastina xelkê, di nav aligiran de pêwistiya peymanê jî hatine axaftin.

**Hîndîstan li Hewlerê konsolxanê vekir**

Hîndîstanê li Hewlerê paytexta Kurdistanê konsolxanê vekir û yekem konsolê Hîndîstanê Deepak Miglani dest bi peywira xwe kir. Konsol Miglani di merasima vekirina konsolxaneyê de diyar kir ku ji ber ku li RHK'ê dest bi kar kiriye, gelekî kefweş e. Konsloê hindî heyraniya xwe ya ji bo têkoşîna ku kurdan li dijî DAIŞ'ê dide, anî ziman. Konsol eşkere kir ku Hîndîstan û Kurdistan, hevkar in û hêvî dike ku ji bo berjewendiya her du aliyan ev hevkarî mayîn de bibe. Berdevkê RHK'ê Felah Mustafa li ser Twîtterê ji bo Miglani serkeftin xwest û ragihand ku li gel dijwartiyên ku Kurdistan te da ye, dîsa jî hêzên navnetewî dixwazin bi Kurdistanê pewendiyên baş çêbikin.



Mesrûr Barzanî:

## Pêşmerge dîrokê ji nû ve dinivîsîne

Şêwirmendê Encûmena Ajansa Ewlehiya Kurdistanê Mesrûr Barzanî piştî operasyona Pêşmergeyan li Guwer-Xazirê daxuyaniyek da û diyar kir ku piştî operasyonan ew herêm bi tevahî ji destê DAIŞ'ê hatine paqijkirin û xetera DAIŞ'ê li wan herêman nemaye. Barzanî li ser Twîtterê derbarê operasyonê de jî agahî dan û got di operasyonê de 150 kîlometreqare xak ji DAIŞ'ê hatiye rizgarkirin û gelek kes hatine xelaskirin. Barzanî wisa pê de çû: "Cihên stratejîk ketin bin kontrola Pêşmergeyan. Bi taybetî riyên Mûsilê ku dijmin bi kar tîne, êdî din bin kontrola Pêşmergeyan da ye. Ez Hêzên Pêşmergeyan pîroz dikim. Serkeftina ku Pêşmerge li aliyê rojavayê Mûsil bi dest xistiye, li Kurdistanê xetera DAIŞ'ê kêm kiriye." Mesrûr Barzanî di peyama xwe got, "Pêşmerge mora xwe li bin serkeftinek mezin daye. Pêşmergeyên cangorî rûmet û paşeroja me ne. Ji bo me dimirin û ew dîrokê ji nûh ve dinivisînin."

# Sivîl di bin qurbaniyên êrîşên PKK

**Delila Leylan**



Tirkiye, bi nêzîkbûna ligel Rûsyayê û operasyonên OHAL'ê hewl dide xisarên derbeya Cemata Fethhullah Gülen ji holê rake. Li aliyê din êrîşên PKK'ê yên ku vê dawiyê zêdebûne dibin sedema qurbanîbûna xelkê sivil. Mirina sivîlan a di êrîşên dawî de bûye mijara herî sereke ya rojevê. Di 15'ê Tebaxê de ji aliyê PKK'ê ve hatibû ragihandin ku ew ê çalakiyan li dijî leşkeran pêk bînin û cihên leşkerî û emnî bikin armanc. Herwiha rayedarên PKK'ê ragihandibûn ku ew ê êrîşên xwe li rojavayê Tirkiyê jî pêk bînin û ew sivîlan nakin armanc. Piştî vê daxuyaniyê di navendên bajaran de piştî hev bombe hatin teqandin. Di êrîşên li bajaran de herî zêde sivîlan zerar dît. Di encama teqînên Merdîn, Wan, Bêdlîs, Amed Elazîzê bi dehan sivîl mirin û bi sedan kes jî birîndarbûn. Herî zêde di teqîna Elazîzê de zerar gehişt sivîlan û di vê xwekujiya li Midûriyeta Ewlehiya Elazîzê 200 kes birîndar bûn. Pisporan ragihandin ku ji wan 60 kes sivîl in û di nav meheke de PKK 19 êrîş pêk anî. PKK berpirsyariya teqînên Wan, Mêrdîn, Bêtlîs, Amed, Qoser û Elazîzê li xwe girt.

Çend roj berê teqîna Elazîzê li Sûrê navçeya Amedê teqînek pêk hat û ji malbatek 5 kes mirin û 54 sivîl jî birîndar bûn.

Komeleya Mafên Mirovan a Şaxa Amedê derbarê mirina sivîl û êrîşan de raportek amede kir û li gorî raportê di despêke 6 mehên 2016'an mirina sivîlan û hejmara êrîşên teqînê ber bi zêdebûnê ve çûye û bi vê re bi awayek sîstematîk şîddet zêde bûye. Di raportê meha Tebaxê cih negirtiye. Lê li gorî hejmaran di navbera mehên Çile û Hezîranê 2016'an de 23 sivîl mirine û 23 sivîl jî birindar bûne. Di bûyerên teqînê de 32 sivîl mirine û 172 kes jî birindar bûne.

Ji aliyekî ew rûdan pêk tên, ji aliyê din ve jî ligel nerazîbûna gel 'ji bo çi ev bûyer pêk tên' tê pirsandin. Rayedarên berê yê PKK'ê Osman Öcalan, Dursun Ali Küçük, Parlamenterên HDP'ê û AKP'ê, saziyên medenî, ev meseleyê ji BasNûçe'ye nirxandin.

**Öcalan: PKK, kurdan armanc digre**

Rayedarê berê yê PKK'ê Osman Öcalan diyar kir ku PKK, kurdan armanc digre û êrîşê ku sivîlan armanc digre, rê li ber provokasyonan vedike. Öcalan da zanîn ku di prsosesa çareseriyê de pewendiyên kurd û tirkan baş bû û wisa pê de çû: "Hêzên herêmê û navneteweyî ev naxwestin û xwestin li Tirkiyê şer derbixin. Ji ber vê li Ceylanpırê du polîs kuştin, proses bi dawî kirin û dîsa alozî dest pê kir. Ji bo armancên Tirkiyê ê şer dest pê nekir û kes dikare bereksê wê bibêje. Ev şer ne ji bo berjewendiya kurdan bû ne jî ji bo berjewendiya dewleta Tirkiyê bû. Hewl dan ku civakê tevlihev bikin alozî derxin. Ev şer tê astek xeter. Dixwazin li Tirkiyê şerek navxweyî çêbikin û bi vî awayî sivîlan rûbirû bimînin. Dema ku kesên ku mirine dinerin, em dibînin ku di her asta sivîl û civakê beşdarê şer bûne. Kesên ku di hewldana darbeyê de mirin jî sivîl bûn. Îro kesên ku di çalakiyên PKK'ê de dimirin jî sivîl in. Divê bê şert û merc çek bê danîn û divê dîsa prosesa çareseriyê dest pê bike. Çareseriya siyasî hem ji bo berjewendiya dewlet tirk e hem jî ji bo berjenwendiya kurdan e."

**Küçük: Ne şerê KCK'ê şer e, ne jî aştiya KCK'ê aştî ye**

Endamê Berê yê Komîteya Navendî ya KCK'ê Dursun Ali Küçük jî diyar kir ku çalakiyên li dijî sivîlan tên çêkirin, nayên qebûlkirin û armanca KCK'ê tevlihev dike û Küçük wisa pê de çû: "KCK, armanc û sivîlan tevlihev dike. Piştî lêborîn xwast û birimên mehellî çêkir. KCK, stratejiya şer şopand û ji rê derket. Ne şerê KCK'ê şer e, ne jî aştiya KCK'ê aştî ye. Demokratîkbûna Tirkiyê, ji otonomî û hendekan girîntir bû. Tevlihevbûna 8 bajarên me wekî serkeftinê dinirxînin. KCK ji armanc û stratejiya xwe derket û çalakiyên nediyar pêk tînin. Ne hewce ye mirov çalakiyan yekbiyek rexne bike. Wekî ku me di şerê xendekan de dît, ev xizmeta gel nake. Dema ku wesayita bombeya di nava bajer de biteqînî, helbet sivîl jî zerarê dibînin.

**Parlamentera HDP'ê Irmak: Şîddet bi xwe re şîddetê tîne**

Irmak derbarê polîtîka û nêrînên HDP'ê li ser şîdetê axivî û diyar kir ku HDP bi rijd dibêje ku şîddet tu car kêşeyan çareser nake û Irmak wisa pê de çû: "Ne tenê sivîl, dema ku di şer de leşkerek, polîsek an gerîllayek, dimire, ferq nake, dile me pê dişewite. Kî bibe ferq nake, ji bo nemirin, em bi hemû quweta xwe dixebitin. Di rojên dawî bi zêdebûna şîddetê, polîtîkayên hikûmetên ku bi ragihandina ku rewşa awarte re dimeşîne, desteserkirina mirovan, rûdana rojnameya Özgür Gündemê, ev hemû rewşa welat xerabtir dikin. Em dibînin ku aqil ji serî ve avêtine. Divê kêşeyên siyasî bi rêyên siyasî bên çareserkirin. Kêşey kurd, kêşeyek siyasî ye û divê bi rêbazên siyasetê bên çareserkirin. Heger wisa nebe, şîddet ber bi zêdebûnê ve biçe û şîddet dê bi xwe re şîddetê bîne. Ewqas rûdan pêk hatin. Heger heta niha ji wan dersek nehatiye girtin, tê vê wateyê ku aqil ji serî avêtine û ji bo mirina mirovan bê deng dimînin."

**Parlamenterê HDP'ê Geverî: Çalakiyên PKK'ê nayên fêmkirin**

Parlamenterê HDP'ê Geverî diyar kir ku ligel nerazîbûna gelên kurd, li gel îtîraza siyaseta kurd, ligel nerazîbûnên kesên demokratîk, PKK bi rijd di qadên sivîl de çalakiyên xwe yên bombebaranê didomîne û ew nayên fêmkirin. Geverî bi vî awayî axaftina xwe domand: "Heger hilbijartinek stratejîk be ku rêxistinên çekdar car caran rêyên wisa dihilbijêrin, em li dijî wê ne. Di wê çarçoweyê de rêxnebûna HDP'ê tê fêmkirin; lê em wekî partiyek her tim dibêjin çalakiyên PKK'ê yên ku di qadên sivîlan de pêk tîne, divê bi dawî bibe û di nav bajaran de şer neke. Di nav HDP'ê de kesên ku xwediyên ramanên cuda ne jî, bi awayek tund çalakiyên wisa rexne dikin. Gelê kurd, xwediyê têkoşîna demokratîk e. Em heta dawiyê piştevaniya vê têkoşînê dikin û ti car em ê piştevaniya çalakiyên nemeşrû nakin û em hertim destnîşan dikin pêdiviyên gel bi çalakiyên wisa tuneye. Divê PKK bizanibe ku ji îro pêş ve di nav bajaran de çalakiyan pêk bîne, nerazîbûna civakê dê bikşîne ser xwe. Nexwe înfîalek dê aştiya civakê xerab bike û dê zerar bide têkoşîna gel û di vî warî de metirsiyê min yên wisa hene."

**Parlementerê berê yê AKP'ê Özdemir: Pîyana exlaqa şerê jî heye**

Parlementerê berê yê AKP'ê yê Elîhê Ziver Özdemir jî derbarê çalakiyên xwekujiyê axivî û diyar kir ku kesên çalakiyên xwekujiyê pêk tînin, aqlê xwe winda kirine û nikarin li ser rastîbûna wê bifikirin û pîyana exlaqa şer jî heye. Özdemir êrîşên PKK'ê bi tûndî rexne kir û axaftina xwe xwe wisa domand: "PKK bi wan çalakiyên xwe pîvana mirovatiye û exlaqê derbas kiriye. PKK, bombeyan li ser kesên ku piştevaniya wê dikin, dibarîne, bombe diteqîne û zarok, jin, bêguneh hemû kesan qir dike. Hemwelatî ji ber vê razî nînin. Çawa hemwelatiyên ji rêxistêna FETÖ'yê re got ''Êdî bes e', rojekê wê li dijî wê derkevin kolanan û êdî bibêjin 'Êdî bes e.' Divê hem tirk û hem jî kurd wê bikin. Bi alîgêrên PKK, hemû kes dê bibînin ku PKK xizmet armanca wan nake. Ew kiryar, xizmeta dijmenên tirk û kurdan dikin. Divê demildest ew çalakî 'bêyî lêbelê' bê sekinandin.

**Serokê Mazlum-Derê Ünsal: Çalakiyên ku li dijî jiyanê tên kirin meşrû nînin**

Serokê Mazlum-Derê Ahmet Faruk Ünsal ew çalakî şermezar kir û diyar kir ku çalakiyên ku li dijî jiyanê tên kirin, meşrû nînin. Ünsal wisa pê de çû: "Êrîşên bi vî awayî îhtimala destpêkirina gotûbejên çareseriyê dê xelas bike, kêşeyên derûnnasî çêbike û di nava civakê de kînê zêde bike. Em bi awayek diyar şermezar dikin. Em banga PKK'ê dikin ku demildest dest ji çekan berde û agirbestê ragihîne û gotûbejê deklare bike. Bi pêgavên erêniyên dewletê dê ev baştir bibe."

Serokê Giştî yê Komeleya Mafên Mirovan (İHD) Türkdoğan: Em çalakiyên ku li dijî sivîlan tên kirin, şermezar dikin

Serokê Giştî yê Komeleya Mafên Mirovan Özgür Türkdoğan da zanîn ku derbarê çalakiyên PKK'ê rêbazên gerdûnî diyar in. Ji ber vê Serokê İHD'ê nexwest zêde li ser vê biaxive. Türkdoğan bî kûrtasi wisa got: "Me derbarê vê de hertim raman û nerazîbûnên xwe nîşan dan, ji bilî vê ez naxwazim tiştekî dî bibêjim. Çalakiyên ku li dijî sivîlan tên kirin, em şermezar dikin û divê çalakiyên bi vî awayî neyên kirin. Divê demildest prosesa çareseriyê bê destpêkirin. Eleqeya me bi kî çi dike, çi difikire, tune ye. Tiştên ku me eleqeder dikin prensîbên me ne."

## Hevkariya Moskova-Enqere-Şam

# Li ser Sûriyê rikberî û rageşiya nû

Ahmet Özyeter



Regeşî û rikberiya di navbera YPG'ê û rejima Sûriyê de li Hasekê weke peççûnan dîsa rûdan, herwiha balafirên rejima Sûriyê li bajêr li baregehên YPG'ê dan û li dijî YPG'ê banga çekhilgirtinê kir. Li aliyê din amaje li ser wê yekê hene ku hevdîtina beriya bi demekê ya Pûtin û Erdoğan ji tesîreke mezin li şer û pevçûnên rejimê kir-ine. Çavdêrên siyasî tekeziyê li ser wê yekê dikin ku piştî danûstendina Erdoğan ü Pûtin wan pevçûnan rûdaye. Hin pispor û rojnameger jî îddî dikin ku di navbera Beşar Esad û Recep Tayyip Erdoğan de peywendî duristbûye û herdu ji ser telefonê bi hev re axivîne û Esad piştî vê hevdîtinê piştevanî ji Erdoğan stendiye.

Li aliyê din piştî derbeyê daxuyaniyên NATO û DYA'yê li cem hikûmetê bibûn se-dema nerazîbûnan û hikûmetê jî bi tûndî bersiva wan dabû. Herwiha, peywendi-yên Rûsya û Tirkiyê yên bi ketina balafira Rûsyayê ji aliyê Tirkiyê ve jî nebaş bibûn. Di Hezîranê de bi civîna nûnerên herdu welatan baş bibû. Hevdîtina Erdoğan û Pûtin jî weke normalîzebûna peywendiyên Rûsya û Tirkiyê tê nişandan. Gelek şîrovekar û pispor danûstendin û diyaloga Tirkiyê û Rûsyayê weke durketinea Tirkiyê ya ji NATO YE û DYA'yê dinirxînin. Danûstendinên Rûsya û Tirkiyê, siberoja kurdên Sûriyê, polîtîkaya Tirkiyê ya derve rojnamegerê rûs Yury Barmin, rojnameger Fatih Yaşlı, akademîsyen Prof. Dr. İlter Turan roj-namegerê kurd Hejarê Şamil ji BasNûçe'yê re şîrovekirin.

**"Tiştekî Rûsya yê ku ji Tirkiyê re pêşkê bike tuneye"**

Rojnamegerê rûs Yury Barmin, tekeziyê li ser wê yekê dike ku peywendiya Tirkiyê bi DYA û NATO'yê re xirab nebûye, Tirkiye polîtîkaya xwe ya derve guherandiye û bi vê yekê Tirkiye diwxwaze ligel Rojava danûs-tendinên vekirî pêk bîne.

Yury Barmin, ragihand ku dê Tirkiye di warê siyasî û îktîsadî de berê xwe nade Av-rasyayê û dê Enqere û Mokova ne-bin hevpeymanên hevdû. Di beşeke din a axaftina xwe de rojnameger Barmin, ragihand ku Erdoğan wê yekê baş dizane ku mifaya wê yekê heye ku Tirkiye bibe parçeyekî Rojava û di warê aborî û siyasî de bi welatên Rojava re hevpeyman be. Barmin wiha domand: "Danûstendina siyasî ligel Av-rasyayê dijwar e. Gelek dewlet dixwa-zin bibin zilhêzên cîhanê. Çîn, Hîndîstan, Rûsya û dewleteke bihêz Îran heye. Lêbelê di Ewropayê de cihekî taybet ê Tirkiyê heye. Aniha pêdawîstiya YE'yê bi Tirkiyê heye. Erdoğan vê yekê baş dizane. Bi giştî aniha tiştekî Avrasyayê nîne ku ji Tirkiyê re pêşkêş bike. Di taybetî jî de tiştekî Rûsyayê tuneye ku ji Tirkiyê re pêşkêş bike."

Rojnameger Barmin xistina balafira Rûsyayê ya ji aliyê Tirkiyê jî bi bîr xist û da zanîn ku NATO'yê di derbarê Tirkiyê de biryarek stendiye û eger ji ber polîtîkayên ne cidî yên Tirkiyê Tirkiye û Rûsya rageşiyê bikin NATO wê li hember Rûsyayê ranew-este. Barmin axaftina xwe wiha bi dawî kir: "Eger ji ber polîtîkayên ne cidî Tirkiye rageşiyê bi Rûsyayê re bike dê NATO ligel Enqerê cih negre. Herçend ku Tirkiye endamê NATO'yê ye jî, dema ku Tirkiye bi qeyranekê re rû bi rû dibe hemû endamên NATO'yê li ser Tirkiyê di heman fikrê de ne. Polîtîkaya Tirkiyê ya derve gelek caran ne li gor a NATO'yê ye."

**"Pevçûna rejimê û kurdan ne surprîz e"**

Rojnameger Hejarê Şamîl jî ji BasNûçe'yê re axivî. Şamil amaje li ser wê yekê kir ku pevçûnên rejima Esad û kurdan ne surprîz bû. Herwiha Şamîl da zanîn ku lawazbûna DAIŞ'ê dê bibe sedema bihêzbûna rejima Esad. Şamîl bal kişand ser hevsengiya şer li Sûriyê û wiha domand: "Li Sûriyê bi lawa-zbûna DAIŞ'ê re destê rejima Esad bi hêz dibe. Dê nakokiyên di navber Esad û kurdan jî di vir de derkevin. Ev yek peywendîdar e bi lawazbûna DAIŞ'ê."

Di berdewamiya axaftina xwe de Şamîl li ser helwesta Rûsyayê ya li hember kurdan jî rawestiya û wiha got: " Diyar nîne gelo ka dê di kurtedemekê de li ser kurdan stratejiyeke nû durist bike. Armanca sereke ya Rûsyayê ew e ku bi mudaxaleya leşkerî destê Esad bihêz bike. Dixwaze bi piştevaniyê Esad li ser piyan bihêla da ku şerê DAIŞ'ê bike. Heta astekê ev yek pêk anî û hin hêzên xwe vekişandin. Kurd hêza herî karîgerbûn li ser erdê. Kurd jî, ji ser PYD'ê bi rejimê re nediketin rikberî û rageşiyê."

**"Hevpeymanê kurdan ê stratejîk Rojava û DYA'ye"**

Herwiha rojnameger Şamîl amaje li ser wê çendê jî kir ku mirov dikare şîrove li ser wê yekê bike ku piştî hevdîtina Pûtin-Erdoğan êrîş li Hesekê û Qamişli li ser kurdan pêk hatine û ev yek jî peywendîdare bi hewldana Rûsyayê ya avakirina mîhwereke şîe. Şamîl axaftina xwe wiha bi dawî kir: "Ev geşdan pe-ywendîdar in bi hewldana Rûsyayê ya avaki-rina bereyeke şîe, ev yek hem di berjewendi-ya Rûsya û hem jî di berjewendiya Îranê de ye. Rûsya hewlda ku Erdoğan peywendıyan durist bike bi Esad re. Irak, Îran û Lûbnan jî di nava vî karî de ne. Rûsya dewleteke zilhêz a ciha-nê ye. Divê peywendî bi Rûsyayê re hebin. Lê divê berê kurdan li Rojava û DYA'yê be. Heta ku statûkoya li Rojhilata Navîn neguhere azadiya xwe bidest naxin. Ji ber vê çendê hevpeymanê stratejîk ê kurdan Rojava û DYA'ye. Li ser vê yekê divê haya kurdan ji gavên Rûsyayê hebin."

**"Mimkun e bi beşdariya CHP'ê proseya çareseriyê dest pê bike"**

Rojnameger Fatih Yaşlı bal kişand ser têkçûna proseya çareseriyê û derbarê vê de çavderiyên xwe parve kir û da zanîn ku hîn jî ne diyar e; lê prosesa çareseriyê dê bê destpêkirin. Yaşlı gotina CHP'yê ku 'divê em HDP'ê binîn ser rêyên meşru' bi bîr xist û wisa pê de çû: "Li parlementoyê bi beşdarbûna CHP'ê dibe ku di nava 3-5 mehan de prosesek nû dê dest pê bike. "

Yaşlı derbarê polîtîkayên derve yên Tirkiyê jî axivî û diyar kir ku Tirkiyê di polîtîkayên derve yê de bi tena serê xwe maye û ji ber vê dev ji piştevaniya xwe ya ku dida rêxistinên cihadiyan, berda û Yaşlı axaftina xwe wisa domand: "Tirkiyê dît ku heger piştevaniya xwe ji rêxistinên cihadî vekişîne, ew rêxistin dê bên Tirkiye. Der-barê vê de gelek kêşe hene. Ji ber vê tê xuyakirin ku heta ku Tirki-yê, kêşaya kurd çareser neke, nikare kêşeyên xwe yên derveyê bi awayek aştî çareser bike. Tirkiyê li gorî xwe dê hinek hewlan bide."

Fatih Yaşlı derbarê zêdebûna aloziya di nav PKK û hêzên ewlehiyê jî axivî û ev aloz-iyê weke rikberiya aliyan bi nav kir. Rojnameger Yaşlı wiha domand: "Ez bawer dikim ku ew zêdebûna aloziyê, ji bo bihez-tirkirina destê xwe yê bazarê ye. Zêdebûna êrîşên PKK'yê jî ji ber vê ye. Ihtimalekê heye di paşerojê de prosesa çareseriyê bê destpêkirin û ji ber vê ji niha vê destê xwe xurttir dikin. Her du alî jî bi awayekî di-yar dixwazin ku ji bo prosesê lihev bên."

**Dibe ku Îran, Sûriyê û Tirkiyê li ser feti-sandina tevgera kurd lihev bikin**

Yaşlı bal kişand ser îhtîmala li dijî tevgera kurd, lihevhatina Îran, Sûriyê û Tirkiyê ye û da zanîn ku dibe ku Îran, Sûriyê û Tirkiyê li ser fetisandina tevgera kurd lihev bikin. Lê hevsengiya navneteweyî dê destûr nedin. Yaşlı îdia kir ku Rojava dê destûr nede ku tevîgera herî sekûlara li Rojhilata Navîn bê fetisandin û Yaşlı axaf-tina xwe domand: "Eger tiştekî bi vî awayî pêk bê, kurd bi hêzên xwe re dikarin xwe biparezin." Her-wiha Yaşlı bal kişand ser xeterbûna rûdanek wisa û eşkere kir ku eger tiştekî wisa li dijî kurdan bê kirin, rê li şerekî herêmî veke û vê helwesta Îran, Sûriyê û Tirkiyê bi tenê bandor li ser kurdan neke; herwiha bandor li ser hemû gelan bike û dewletên navnetewî destûr nekin ku bûyerek wisa pêk bê.

**Haya Pûtîn ji vekirina nûnertiya PYD'ê ya li Rûsyayê tune ye**

Prof. İlter Turan eşkere kir ku çapemenî derbarê hevdîtina Pûtin û Erdoğan de çiqas agahî daye, zanyarî yên wî jî ewqas e û wekî ku wî ji medyayê şopandiye û li gorî wî jî xebera Pûtîn ji vekirina nûnertiya PYD'ê ya li Rûsyayê tune ye. Turan da zanîn ku li Ba-kurê Sûriyê damezirandina devletekî kurd yê serbixwe nayê qebûl-kirin û Turan wisa pê de çû: "Tenê sazkirina herêmek otonom mimkûn e. Em nizanin di paşerojê de Şam dê çawa bibe. Lê ez bawer nakim ku rêberiya Sûriyê, ramana sazkirina herêmek otonomi ya li Sûriyê qebûl bike. Tirkiyê jî ev raman pesend na-ke."

İlter Turan pêwendiyên PYD û DYA'yê jî nirxand û eşkere kir ku DYA naxwaze li dijî DAIŞ'ê leşkerên xwe bi kar bîne û ji ber vê jî piştevaniya PYD'ê dike. Turan wi-sa got: "Ji ber vê bi awayek diyar ji PYD'ê re negotiye ku hûn çi dixwazin bikin. Di eslî de DYA jî razî nîne ku Menbîc bibe heremek kurd û kurd li vê derê bên bicih-kirin. Ji ber vê ewşê bêyî alîgirên DYA û Tirkiyê, divê Sûriyê, Rûsya, DYA, Tirkiyê û PYD bihev re vê diyar bikin. Sûriyê û Tirkiyê, pêkhatina herêmek otonomî qebûl nekin.



## Lêkolîner Sîpan Seyda:

# Divê ENKS û PYD li dijî rejimê bibin yek!

"Pêwîstiya rejimê bi rêxistina PYD ya çekdarî nemaye. Wan gelek alîkariya rejîma Esad kir, bi taybetî li Hesekê û deverên din. Di wîr de wek ku dibêjin, PKK'ê ne dixwest li gel hikûmeta Sûriyê dest bi şer bike, lê şer hat destpêkirin. Di wir de gelo rêxistina PYD dikare bi rejîma Sûriyê re şer bike û dikarê wî şerî bidomîne? Ew helwest girêdayî helwesta Amerîkayê ye. Amerîka wek hêzêkî herî mezin e di cîhanê de. Helwesta Hikûmeta Kurdistana Başûr, yanî wek hêza Kurdistanê jî eger pişta wan bigrin wê karibin wî şerî berdewam bikin. Eger piştgirî tune be bawer nakim ku karibin şer bikin. Çimkî rejîm ji hêza wan gelekî xûrttir û bi hêztir e."

Mehmed Salih Bedirxan

Ji destpêka şerê navxweyî li Sûriyê rejima Beşad Esad û PYD'ê heta niha li dijî DAIŞ'ê û dijberiya Sûriyê hevpmaniyeke veşartî danîbûn. Herwiha di havîna 2014'an û destpêka sala 2015'an li Hesekê li dijî hevdû şer kirin. Ji bilî Hesekê di Gulana 2015'an jî de li Qamişlo şerê hevdû kirin û di encama şerê wan de ji herdû aliyan gelek kesan jiyana xwe jidest dan.

Beriya bi çend rojan hêzên rejimê li Hesekê bi ser baregehên YPG'ê de girtin û ew bombebaran kir. Heta niha rejimê bi balafiran li YPG'ê nedabû û şerê wê û YPG'ê wisa bi giranî berdewam nekiribû. Di encama bomberana rejimê de gelek jê sivîl 19 kes bûn qurbanî. Herwiha hat zanîn ku zêdetir ji 25 milîseyên rejimê jî hatine kuştin.

Hêjayî gotinê ye ku şerê rejimê û YPG'ê piştî dîplomasiya, Îran – Rûsya û Tirkiyê de pêk hat. Gelek pispor bale dikşînin ser wê yekê jî û eşkere dikin ku Beşar Esad û Erdoğan ji ser telefonê bi hev re axivîne û piştî wê rejimê dest bi êrîşan kiriye.

Lêkolîner Sîpan Seyda, geşedanên nû yên li Sûriyê û şerê rejimê û YPG'ê ji BasNûçe'yê re şîrove kir. Seyda tekeziyê li ser wê yekê dike ku divê PYD li xwe vegere û ligel ENKS'ê li dijî rejima Esad raweste. Herwiha Seyda da zanîn ku eger PYD xwe nêzîkî bereya niştimanî bike dê DYA û RHK'ê jî piştevanî û alîkariyek zêdetir bikin.

**Ji destpêka şoreşa Sûriyê heta niha ji bilî çend pevçûnan rejim û YPG'ê li hember hevdu ranewestiyabûn û rejimê firokeyên şer ranekirbûn ser bajarên kurdan û YPG'ê. Çima aniha li Hesekê şerê hevdu dikin?**

Bûyerên çêbûn di şoreşa Sûriyê de li hinek deveran rejîm zeîf kir û li hinek cihan jî lawaz kir, rejîma Sûriye têkiliyên xwe li gel hikûmeta Tirkiye, Îranê û Rûsya têkiliyê nû çêkirin. Bi razîkirina dewleta Tirkiyeyê wê alîkariyê li ser opozîsyona Sûriye bigrin. Ji bo dest ji piştgiriya opozîsyona Sûriyê berde. Di wan danûstendina de mercên wan hene, di wan hevpeymana rewşa kurdan li bakûrê Sûriyê divê weke wan 5 salên borî nemîne. Hikûmeta Tirkiyê û hetta hikûmeta Sûriyê jî piştî van têkiliyên wan dê dest bi qonaxeke nû bikin. Hêzên nû hatine herêmê, Amerîka û hêzên Ewropa wek Fransa, Îngîltere hatine. Metirsiyek çêbûye ji wan dewleta re, Amerîka hatiye cihekî bigre li bakûrê Sûriyê li Kurdistana Sûriyê de. Herwiha Amerîka dixwaze li Kurdistana Iraqê de cih bigre,

Diyar e ku aciziyek çêbûye dixwazin rewşa kurdan têk bidin. Ew şerê aniha yê li Hesekê wê carê ne wek şerê cara din e. Îxtîmala ku berdewam bike heye. Heta çend meha îxtîmala ku dewam bike heye û rejîmê dest bi şer û êrişan kiriye. Pêwîstiya rejimê bi rêxistina PYD' ya çekdarî nemaye. Wan gelek alîkariya rejîma Esad kir, bi taybetî li Hesekê û deverên din. Di wîr de wek ku dibêjin, PKK'ê ne dixwest li gel hikûmeta Sûriyê dest bi şer bike, lê şer hat destpêkirin. Di wir de gelo rêxistina PYD dikare bi rejîma Sûriyê re şer bike û dikarê wî şerî bidomîne? Ew helwest girêdayî helwesta Amerîkayê ye. Amerîka wek hêzêkî herî mezin e di cîhanê de. Helwesta Hikûmeta Kurdistana Başûr, yanî wek hêza Kurdistanê jî eger pişta wan bigrin wê karibin wî şerî berdewam bikin. Eger piştgirî tune be bawer nakim ku karibin şer bikin. Çimkî rejîm ji hêza wan gelekî xûrttir û bi hêztir e.

Armanca rejîmê çiye ku li Hesekê êrişê YPG'ê dike. Hinek şîrovekarên siyasî amaje li ser wê yekê dikin ku rejîm dixwaze riya di navbera Başûr û Rojava qût bike xwendina cenabê te li ser vê meseleyê çi ye?

Ew yek durist e. Lê rejîm li PYD'ê dixe ku tê fêmkirin tenê ji bo razîbûna Tirkiyeyê diwazin mesajekê bidin Tirkiyê. Razîbûna wan piştî danûstendineke dirêj û rûniştinên dirêj biryar dan. Rejîma Esad dixwaze ku ji Tirkiyeyê re nameyeke li Hesekê bigihîne Tirkiyeyê. Îro ew dikare pirsa kurdî ji sedî sed nehêle. Yanî rejîm dixwaze bêje, 'hêj ez dikarim pêşkeşkim ji were, hûn jî piştgiriya xwe ji opozîsyonê re kêm bikin.' Ji bo ku opozisyon razîbe ji hikûmeta Esad û ji bo razîbe bi hevpaymeneke demeke dirêj.

**Li Helebê, li Hesekê û li Qamişlo li wan her sê deveran rejîm û YPG bi hevre alîkariyê dikin û hevpeymanên hevdû ne, mimkûn e şer derbasî wan deveran jî bibe?**

Bê guman, niha li Kobanê rejîm tune, li Efrînê rejîm heye, li dû gundên şîe hene û hêza wê mezin e aniha hêza rejîmê li wê heye. Ez bawer dikim şer zû bi zû pê nekeve. Navbera wan ne xweş bûye û ew girêdayî têkiliya rejîma Sûriyê ku bi rejîma Tirkiyeyê re nûh çêbûne ve girêdayiye. Niha hevdîtinan pêk tînin li Cezayîrê bi serpereştiya Rûsya û Îranê û ez bawer dikim têkiliya Îranê ji PKK bi giştî bê gûhertin. Ji 2004'an de qonaxek hebû ji PKK'ê rê, ez bawer dikim PKK û Tirkiyê wê dew ji wê berdin û ez bawer dikim wê kurd li wê herêmê bibin qurbaniya wan rêkeftinên Îran û Tirkiye yê. Rewşa kurdan dimîne li ser Amerîka û Amerîka çiqas pişta kurdan digre li Rojava û Başûr em nizanin gelo Amerîka rast e li gel kurdan e an ne raste ew ne diyar û ne zelal e. Em bi hêvî ne ku rast be, eger Amerîka alîkariya kurdan neke ew problemeke mezin e. Ji ber Hikûmeta Îranê û ya Tirkiye hêzên mezin in, hêzên leşkerî ne kevn in, dî dîroka wan de dewletên mezinin ne ku dewletên biçûk ku wek Sûriye, Iraq û Libnanê nînin. Di wir de metirsiyeke heye PYD jî hêza xwe li ser rejîma Sûriye avakiriye. Niha divê li xwe vegere û fikir bike û belkî di hevpeymanê siyasî de bi erzanî bê firotin, di nav dewletan de berjewendî sereke ne.

Belkî ji aliyê Beşar Esed de bê firotin. Dema mirov bala xwe dide PYD dibîne ku ew bi xwe jî ne yekin dû, sê ray hene ew bi xwe ne yek in. Di serpeştiya wê de ne yek in. Çi li herême û çi jî li Qendîlê yanî rayek dû û sê hene. Hinek dibejin 'em ê li dijî hikûmetê bin,' hinek dibejîn 'na em ê li cem hikûmetê bin' yanî bi biryara xwe ya siyasî de ew jî ne yek in. Ez bawer dikim pirs mezin e û ne şano ye. Wê carê rûniştinên mezin tehdîdên cîddî wek ku li astên dewletan de, meseleya kurdan ya netewe, şiyarbûna kurdan, hêstên netewe ku kurd milyon kesin û wan salên borî de dewlet gelek jê ditirsin û gelek hesaban jî jê dikin. Lê ez bawer dikim ku çendîn PKK alikariya wan dike, xizmeta wan dike, wek ku rêxistin jî bûye, dibejin cihê metirsiyê li ser Kurdistanê tirsek heye.

Piştî van rûdanan gelo mimkûn e PYD li xwe vegere û xwe nêzîkî ENKS'ê û Herêma Kurdistanê bike?

Eger ew şerê Hesekê ku berdewam be wê bêguman têkîliyên xwe mecbûr veke. Eger veneke li Başûrê Kurdistanê re û wê meseleya şer bi roja û hefteyan namîne. Herêma ku tê de bakurê wê bi tevahî Tirkiyeye û zane meseleya Bakurê Kurdistanê ji Mêrdînê heta Dêrikê, danûstendine wê dê nêzik bibin. Rejîma Sûriye şerê wan bike tundî yan germî di wan heftiyê bê de yan di wan dû meh sê mehên ku tê de li Kurdistanê vegerin. Li Başûrê Kurdistanê heta tenazûlê jî bikin ew ê mercên Hewlêrê, qebûl bikin. Partiyên Kurdistanî ê Rojava û Pêşmergeyên Rojava jî derbas bin. Ez bawer dikim ku PYD heta niha hişk e ji ber ku têkiliyên wî li gel rejîmê û Îranê gelekî bi hêz in. Bes niha eger ew têkiliyên wan bişkên an nemînin PYD wê vegere wek partiyek normal bibe. Tû hêzek wê yê mezin tune îro mesele di ragihandina wan de hêza ku heye ya rejîmê ye.

Di wir de ez bawer dikim ku li xwe veger û li millete xwe vegere. Îxtîmaleke din jî heye mesele belkî PYD wek ku dibêjin belkî rejîm wan derxe û bikişînîn Qendîlê û heta jî Sûriyê bi tevahî derkevin. Bi hikûmeta Kurdistanê re bikevin tîfaqeke. Ez bawer nakim ku wisa bibe. Ez bawer dikim PYD wek ku dibêjin meşrû heqên wan hebûn li Sûriyê, sozên wan hebûn li cem hikûmetê, sozên mezin bi hev re dabûn. Bawer dikim rejîm eger li wan û derevan bikin wê problem çê bibin di nav wan de. Ji ber rejîma Sûriyê jî ji ber ku 6 sal in şer didome hêz nema ye. Wek ku îro behsa hêza rejîmê dikin kêm mayê hêza wê kêm maye, leşkerên wê kêm bûne. Ew hewldanên Hikûmeta Kurdistanê û Amerîka pişta PYD'ê bigrin yan pişta kurdên Rojava bigrin ez bawer dikim hewldana Esad, Îran û Tirkiyê wê bê şikandin.

**ENKS daxuyaniyek belavkir û xwest Pêşmergeyên Roj demildest derbasbin. Hûn rola ENKS'ê çawa dinirxînin?**

ENKS wek helwesta wan ya siyasî û polîtîkî baş e, nêrîna wan, xwendina wan baş e. Lê meseleya derbasbûna ser erdê, helwesta şer bikin, meseleya derbasbûna



Pêşmerge û hevpeymanê bikin ligel hêzên YPG û PYD'ê di baweriya min de ew girêdayî yê biryara Amerîka û alîkariya Hikûmeta Kurdistanê ye. Ez bawer dikim eger kurdên Rojava bibin yek wê Hikûmeta Kurdistanê û Serok Mesûd Barzanî alîkariyeke mezin bidin wan.

**CENTCOM'ê daxuyanî belavkir ku wan balefir ji kurdên Rojava re şandine. Li aliyê din di ragihandinê de xuya bû Amerîkayê dû sê baregehên leşkerî danîbûn yek jê li Kobanê, ya din li Rimêlanê mimkûn e ku alîkariya çek û balafiran bikin li kurdên Rojava re?**

Em bi hêvîne ku wisa be ew hêza Amerîka ya ku li Rîmelanê yan jî Kobanê nehêle rejîma Sûriye êrişê heremê kurdan bikin lê heta niha helwesteke fermî ji aliyê Amerîka derneketiye. Tiştekî fermî ku bêjin em li dijî rejîmê ne û em qebûl nakin kes li kurdan de bes tê gotin ku îro ew firokeyên Amerîkayê derbasbûne firokeyên rejîmê vekişiyanê çûne Lazkiyeyê, çûne Şamê vegeriyane cihê ku jê hatine. Ez bawer nakim ku di wê qonaxê de dev ji kurdan berde. Kurdan gelek qurbanî danê di şerê DAIŞ de û di ber mafê mirovan de wek miletek ji bo hebûna xwe berdelek mezin dane.

**Meseleyek din jî bereyeke şîî û bereyeke sunî avabibû. Ku bereya şîî Îranê serkêşiya wê dikir ya sunî jî Erebîstana Siûdî û Tirkiyeyê serkêşiya wê dikir û qada wan ya şer Sûriye bû. Îro rewş berevajî bûye. Wezîrê Karê Derve yê Tirkiye bi awayeke veşartî derbasî Tahranê bûye. Çima ew bere û guherîn?**

Di baweriya min de di wî şerî de 2 grub hene ya şîa veke bi serokatiya Îranê û gruba sunî bi serokatiya Erebistana Siûdî. Ez bawer dikim ew şerê wan şerê hebûn û nebûnê ye. Dixwazin hevûdin nehêlin. Şereke gelek pîse, gelek mezine meseleya Îran dixwaze welatên ereban hemûyan dagir bike. Ereb jî dibêjin em jî şer dikin di ber mafê xwe de û em jî dixwazin şer bibin nav mala Îranê. Şerê wan wisa ye, Tirkiye dibêje, 'ev şer çênabe berdewam bike li hev werin Erebîstana Siûdî û Îran divê wek berê bin û destê xwe bixin destê hev û din bila di nav wan de nakokî nemînin.' Mabesta Tirkiye ji wê gotinê ew ê ku dû mabestên sereke hene ku rola xwe dilîze di nav ereba û Îranê de, helwesta tirkan ya ewil Tirkiye dibîne berdewam bûna wî şerê di navbera gruba Îranê û Erebîstana Siûdî û welatên wek Iraqê, wek Sûriye ji sedî sed wê werin perçekirin. Ew ê bêgûman şer dewam bike wê ew welat di bin zehmetiyê de bimînin û perçe bibin û cûda bibin. Wê kurd jî dewleta xwe ya serbixwe ragihînin. Di aliyê din de li Tirkiyeyê meseleya aboriyê heye, aboriya Tirkiyeyê di bin metirsiyê de ye. Meseleya şerek heye li ser dû dewletê cîranê wê, wek Îraq, wek Sûriye şerek heye. Tirkiye ji bo berjewendiyên welatê xwe dixwaze aşitiyek çê bibe. Ez bawer nakim ku Erebîstan û Îran li hev werin. Ew hewldana Tirkiyeyê ne bi dilê Erebîstana Siudi ye. Erebistana Siûdî dixwest ku Tirkiye li cem wan dijîtiya Îranê bike. Lê berjewendiyê wê yê din hene ditirse ku kurdên Îranê jî serê xwe rakin, kurdên Rojhilat û Rojava ji ber ku Tirkiye ji pirsa kurdî gelek ditirse.

**Wisa xûya dike ku di demeke nêz de wê civînên Cenevre IV dest pê bikin. Gelo ew ê PYD li Cenevreyê beşdar bibe yan na?**

Cenevre wê bê li darxistin lê belkî bimîne heta çend mehên din. Lê wê bê daxistin. Kurd jî dû beş in kurdek heye beşek di opozîsyonê de ye em behsa ENKS'ê dikin, û di kesên wan heye ku di desteya bilind ya opozîsyonê de ku 34 kesan pêk tên de 2 kurd endam in. Ew beşdar dibin li Cenevreyê wek nûnertiya kurdan. Ser êrdê jî wek TEV-DEM eger wî şerê ku di navbera PYD û rejîmê de wisa berdewam be di navbera PYD û rejîmê de belkî Amerîka pişta wan bigre û wan hazirbikin bo Cenevrê wek ku bêjin ji aliyê Amerîkayê, ji Rûsya, ji Îranê û Tirkiyeyê re wa ye ez piştgiriya kurdan dikim û ez hesabên we nakim. Wek şandeyeke serbixwe çûna kurdan a Cenevreyê girêdayî helwesta Amerîkayê ye. Eger ku Amerîka tenê piştgiriya opozîsyona Sûriyê ya leşkerî a erebên sunî kir ew tişteke dineyê. Diyar e ku Amerîka razî ye ku rejîmê dev ji PYD'ê berda.

# ZİMANGEH



Abdullah Kıran

Di vê beşa rêzenivîsa xwe de emê li ser têgeheke komkujiyê û hin peyvên jiyana xweza û gundayetiyê rawestin ku li ber nemanê ne.

**Tovbirrî: Soykırım (Genoside):** Komeke mirovan a dînî, etnîkî an jî netewî jinezaro ji navê rakirin; qirkirin. Peyva "tovbirriyê" bi têgiha xwe ya "jenosîdê," ji ser zar û zimanê me ketibe jî, di nifiran de parastî maye.

**Mînak:** Weyla tu xêrê ji xwe nebînî, tovê te bibirre.

**Mînak:** Apê Hesen di sala tovbirriya filehan de hatibû dinyayê.

**Komkujî: Toplu katliam (Mass murder):**

1)Li ser hev, bi tevahî kuştina komeke mirovan; tevkujî.

2)Mec. bi tevahî kuştin an koka tiştekî anîn; qedandin, dawî lê anîn.

**Mînak:** Gelo Heleçe tovbirrî ye an ku tevkujî ye?

**Not:** Di zimanê me de gellek caran "tovbirrî" û "komkujî" bi şaşî di şûna hevdu de tên xebitandin. Ji salixdana jorîn jî kifş dibe ku herdu ne yek in. Divê em, bi taybetî di nivîsandinê de bala xwe bidin vê yekê û van peyvan tevlihev nekin.

**Bihur: Geçit (Pass):** Dera avê ya tenik, dera ku mirov dikare tê de derbas bibe.

**Mînak:** Ma ev der bihur e, em dikarin derbas bibin?

**Mînak:** "Ez xerîb im, nizanim riyan û dirban e / Xwedê hebînî, bihurê çemê Cizîrê kîjan e." (Destana Memê Alan, r.75)

**Zavoq:** Dera asê û teng.

**Vitik: Yaramaz (Naughty):** Ji kes, bi taybetî zarokên ku neriretiyê dikin re tê gotin.

**Mînak:** Bûye vitik û bi min ketiye.

**Mînak:** Çi zilamek vitik û beredayî ye.

**Gelemşe: Kargaşa-karmaşa (Scramble):**

1)Tevlihevî, bêpergalî.

2)Rewşa ku avahiyên dewletê karên xwe baş pêk naynin, serweriya dewletê sist bûye û pergala civakî nemaye; anarşî.

3)Rewşa ku tişt li hev qelbîne û serobino bûne.

4)Rewşa ku hin mirov bi hev ketine, belê ne kifş e ku kî bi kê re pev diçe an jî sedem çi ye.

**Mînak:** Li Suriyê ji serê pênc salan ve ye ku gelemşeyek heye.

**Mînak:** Hemû tişt ketine nav, ev gelemşeyek e.

**Mînak:** Em hatin û li gelemşeyekê qelibîn; hê jî min fêm nekir ku ev mirov doza çi dikin.

**Merajo: Kuşkonmaz (Asparagus):** Cûreyek pincarê ya ku tê xwarin. Merajo di hunerweriya dermanî (ilaç sanayi) de jî tê bikaranîn. Berê li gundan koka merajoyê di nav rûn de diqelandin û jê melhema birînan çêdikirin. Melhema ku ji merajoyê çêdikirin ji bo terk û birînan bi kar dianîn. Dinya hemdem merajoyê wek nebateke antî kanserojen jî dinase.

**Gilgoşar:** Fêkiyek endemîk a ku li hela Serhedê tê dîtin.

**Liva:** Pirça berxên yek salî.

**Tewl:** Avahiya ku hesp û dewarên gir lê tên hewandin.

**Gom:** Avahiya ku mî, bizin û her cûre pezê hûr lê tên hewandin.

**Koz:** Avahiya ku berx lê tên hewandin.

**Gotineke pêşiyan:** Berxê çê ji ber kozê ve kifş e.

**Koxik:** Avahiya ku dîk û mirîşk lê tên hewandin.

**Kurk: Kuluçka (İncubation):** rewşa ku mirîşk an çivîkên mê ji bo ku têjikan bînin li ser hêkan rûdinên.

**Mînak:** Mirîşk kurk rûnişt.

*__Not: Ji bo rexne, gazin, lome û pêşniyazên xwe ji min re binivîsin:__*

*__29abdullah@gmail.com__*

# PDKÎ 71 salî ye



**Kevintirîn partiya kurd PDKÎ ku bi boneya 71 saliya xwe gelek çalakî û pîrozbahî lidardixe, diyar kir ku ew ê xebatên xwe yên li Rojhilat bidomînin û di nava xelkê de dest bi siyaseteke aktîv bikin.**

Memê Botî

Kevintirîn rêxistina kurd; Partiya Demokrata Kurdistana Îranê (PDKÎ) di sala 1945'an de hate damezirandin û piştî 60 rojan jî vê partiyê Komara Kur-distan ya li Mehabadê ragihand û Qazî Mihemed yekem serokê PDKÎ'yê û Serokkomarê Komara Kurdistanê bû. PDKÎ teqrîben 11 mehan ew Komar birêvebir û piştre rejima Îranê êrişî ser Komara Kurdistan kir û Qazî û dost û hevalên wî hatin dardekirin. Piştî vê bûyerê hin endamên PDKÎ'yê hewldan ku partiya xwe bivejînin jî ew li Îranê hatin girtin. Piştî derbeya ku sala 1953'an de li Îranê pêk hat û hikûmeta Mihemedê Musediq hat ruxandin, xe-bata PDKÎ'yê jî hate rawestandin. Lê piştî du salan PDKÎ'yê dîsa xebata xwe ya siyasî bi awayekî veşartî destpêkir. Salên 1959 û 1964'an de rejima Îranê êrişî rêxistina PDKÎ'yê kir û gelek kes ji wan hatin girtin lê dîsa jî PDKÎ'yê xebata xwe domand.

Duyem kongreya PDKÎ'yê sala 1964'an de li Başûr çêbû û xebata PDKÎ'yê gelekî geş bû, di salên 1967-1968'ê wan li Rojhilat li dijî rejîma Pehlewî dest bi xebata çekdariyê kir.

Sêyem Kongreya PDKÎ'yê sala 1971'ê pêk hat ku Qasimlo weke endamê komîteya navendî hate hilbijartin, piştî ku sala1979'ê şoreşa Îranê bi ser ket û Komara Îslamî ya Îranê pêk hat, PDKÎ'yê bi serokatiyê Qasimlo bi awayekî eşkere dest bi xebata xwe kir, di wan salan de PDKÎ û Komele bi hevre kontrola Rojhilatê Kurdistanê girtin destê xwe û bargehên leşkerî ya rejîma Îranê jî ketin destê wan û piştî demekê rêberê Îranê Xumeynî fermana cihadê li dijî xelkê kurd da û artêşa Îranê êrişî Rojhilat kir û şer çend salan dewam kir. Di dawiyê da Îranê kontrola Rojhilatê Kurdistanê bi dest xist û PDKÎ û partiyên din jî mecbûr man ji Rojhilat derkevin û li Başûr bicîh bibin. Zêdetirî 20 salan e ku ji ber hin sedeman PDKÎ bêdeng mabû gelek ji serok û rêberên wan bi destê rejîma Îranê hatine qetilkirin û PDKÎ jî nekarî yekrêziya xwe biparêze û di nava xwe de jî bûne çend parçe.

Piştî ku şerê DAIŞ'ê derket û Rojhilata Navîn tevlîhev bû li Rojava û Başûr û herwisa li Bakur xebatên curbicur hatin rojevê, meseleya serxwebûna Kur-distanê û federasyona Rojava ji bo kurdên Rojhilat jî bû motîvasyon ku di vê demê da bixwazin dest bi qonaxeke nû ji bo bidestxistina mafên xwe yên net-ewî li Rojhilat bikin. Di Newroza îsal de Serokê PDKÎ'yê Mistefa Hicrî ragihand ku ew dê di demeke nêz de xebata çekdariyê li dijî rejîma Îranê dest pê bikin, wisa jî kirin û niha qonaxeke nû ji xebata PDKÎ'yê destpêkiriye, PDKÎ hewldide ku bi partiyên din yên Rojhilat re jî bicive û bereyeke hevpar li dijî Komara Îranê amade bike. Li ser biryara nû ya PDKÎ û qonaxa nû ya destpêkirî em bi hin çalakên siyasî û nûnerên PDKÎ'yê re axivîn.

### Cihangirî: PDKÎ 71 sal in ji bo mafên netewî têdikoşe

Endamê Polîtbûroya PDKÎ'yê Rostem Cihangirî bi minasebeta 71 saliya PDKÎ'yê û xebata partiya wan li Rojhilat zanyarî da BasNûçe'yê. Cihangirî, ragihand ku PDKÎ 71 sal in ji bo azadî, demokrasî û mafê netewî xebatan dike û wiha got: "PDKÎ 71 sal in ku ji bo azadî, demokrasî û mafên netewî dixebite û ji xelkê jî dixwaze herwisa li meydanê amade û hazir bin û li ser mafên xwe yên berheq û rewa bisekinin. Ji ber ku xebata me xebateke rewa ye û hemû miletên bindest ji bo mafên xwe dixebitin heta ku rojekê dê bigi-hêjin armanca û mafên xwe."

Cihangirî tekezî li ser wê yekê kir ku xebata wan a Pêşmergeyatî, xebateke çirikî ye û ew li cihekî sabît nasekinin, herwiha ew hewl didin di nava xelkê de cih bigrin û xebatan ji bo xelkê Rojhilatê Kurdistanê bikin. Cîhangîrî eşkere kir ew her parçeyên welat ji xwe re weke welat dibesibînin lê divê ew vegerin Rojhilat û xebatên xwe li wir geştir bikin: "Partiya me xwe weke ber-pirs ji bo birêvebirina xelkê Rojhilatê Kurdistanê dizane û her tişt ku ji destê me bê em dê bikin û her imkan têkevin destê me em jî bo xizmeta gelê kurd bi kar bînin. Armanca me ya sereke xebata li Rojhilat e. Em li parçeyên din yên welat xwe weke mêvan dizanin, helbet parçeyên din jî em weke axa Kur-distanê dizanin, lê îro roj welatê me Rojhilatê Kurdistanê ye. Xebata me û têkoşîna me jî dê li wir be û niha jî hêzên me li wir di nava xelkê de ne, dijî rejîma Îranê dikoşin û hedef û armancên xwe ji bo xelkê ra zelal dikin."

### "Kiryarên Îranê mezhebî û nijadî ne"

Cihangirî pêla dardekirinê ya li dijî kurdan jî bi bîr xist û tekezî li ser wê yekê kir ku Komara Îslamî ya Îranê bi mejiyekî tarî û nijadî wan kiryaran dike. Ci-hangirî îdamên van du sê hefteyên dawî bi tundî rexne kir û wiha got: "Li Îranê rejîmeke dîktator û hov li ser kar e. Rejîmeke îdeolojîk e û girêdayî mê-jiyeke tarî û sedeyên navîn da ye û ti fikir û ramaneke ji xwe cudatir qebûl nake û lewma her cure hizr û fikrekê tevî ku îslamî jî be ji aliyê wan va nayê qebûlkirin ji ber ku fikir û ramanên wan îdeolojîk in. Em her cure fişar, dardekirin û girtinên ku li ser fikirên ayînî, etnîkî û nijadî be, bi ti awayî qebûl nakin. Em wan şermezar dikin. Û em îdama wan xortên kurd ku ji bo fikir û baweriyên xwe yên dînî hatibûn idamkirin weke cinayetê dizanin. Em dibêjin çareserî îdam û kuştin nîne."

Cihangirî, danûstendin û diyaloga aliyên siyasî yên Rojhilat jî bi bîr anî û daxuyand ku wan dixwest bereyeke hevpar ya Rojhilat ava bikin û ew danûstendin û guftugoya wan rawestiya ye. Herwiha weke PDKÎ'yê wan eşkere kiriye ku her hizbeke beşdarî di xebata çekdarî de bike dikare beşdarî xebata wan bibe.

### Rojnameger Eskender Urmiyê: Li Rojhilat jî dema rabûnê hatiye

Rojnameger Eskender Urmiyê jî li ser rûdanên dawî yên Rojhilat bersiva pirsên BasNûçeyê da û ragihand ku PDKÎ'yê bi armanca parastina berjewend-iyên Başûr û berjewendiyên netewî xebata xwe ya çekdariyê rawestandibû. Wî herwisa got piştî geşbûna xebata li sê parçeyên din yên Kurdistanê, partiyên Rojhilat jî ji bo qonaxeke nû ya xebatê xwe amade kirine û gotinên xwe bi vî rengî domandin: "Piştî guherîna hevsengiyên navçeyê PDKÎ ew bi-ryar daye ku vegere çiyayan û veger navçeyê û xebata xwe berfireh bike. Piştî 71 salan çalakiyên curbicur -di serdema Qazî Mihemed de avakirina Komara Kurdistanê û piştre ji bo demekê veşartîbûna PDKÎ'yê û piştre jî di serdema Dr. Qasimlû de dîsa eşkerekirina xebata çekdarî ya PDKÎ'yê-em di 71 saliya vê partiyê da dikarin peyama PDKÎ'yê wisa bibînin ku êdî dem dema rabûnê ye û xelkê Rojhilatê jî dikare weke xelkê Başûr û weke xelkê Bakur û Rojava li mafên xwe xwedî derkevin. Ew jî dikarin weke wan xebata çekdariyê bikin, ji xwe em dizanin ku li Îranê û Rojhilatê Kurdistanê mafên siyasî nînin ku meriv bikaribe bi awayekî siyasî û medenî weke ku li Tirkiyê heye bixebite."

### "Îran ji bilî xwe tu olên din nas nake"

Eskender Urmiyê derbarê qonaxa nû ya xebata PDKÎ'yê got; "Ji ber ku xe-batên siyasî li Îranê nayên qebûlkirin û êdî ti derfet ji bo partiyên siyasî re nemane, wan dest bi xebata çekdariyê kiriye û axaftina xwe wisa berdewam kir: "Xebata hemû partiyên Rojhilatê di asta siyasî û di asta çekdarî de jî hebûye lê vê dawiyê PDKÎ bi awayekî eşkere behsa xebata çekdarî dike, hêz û Pêşmergeyên wê partiyê ji bo çalakiyan çûne nava gund û bajarên Rojhilat û ew rastî êrişên çekdarî yên Pasdaran hatin, wê demê wan xwe parastin û şer kirin. Em dikarin bibêjin xebata siyasî li Rojhilat bi awayekî fermî û qanûnî hatiye mehwkirin. Komara Îslamî ya Îranê ji bilî xwe ti netewên din qebûl nake. Di qanûna bingehîn ya Îranê da tiştekî bi vî rengî nîne ku kurd, belûc û ereb û netewên din bikaribin ji xwe ra bixebitin."

Eskender derbarê îdamên xortên kurd ku di rojên dawiyê da ji aliyê rejîma Îranê ve pêk hatiye jî got: "Kesên ku vê dawiyê hatin darverkirin komeke ça-lakvanên dînî yên sunne bûn. Piraniya wan kurd bûn, xebat û çalakiyên dînî dikirin. Tevî ku kurd bûn jî karê wan karekî netewî nebû. Lê ew ne terorîst bûn, destê wan di karên terorê da nîbû. Ewçend jî ew hatin idamkirin û mafê jiyanê ji wan hat istandin. PDKÎ jî vê yekê şermezar dike û wê yêkê ne rewa dizane, wan ti sûc li dijî mirovahiyê nekiriye û eger jî wisa be divê ew di dad-geheke bêalî de bihatina darizandin."

## Nûnerên partiyen Bakur:

# Divê PYD dev ji kiryarên xwe berde

Emînê Badikî



Encûmena Niştimanî ya Kurdî li Sûriyê (ENKS) ragihandibû ku hejmarek ji alîgirên Partiya Yekîtiya Demokratîk (PYD) êrîşî nivîsgeha ENKS'ê ya li Qamişlo kirine. Piştre serokê ENKS'ê Brahîm Bro ligel çend hevalên partiya wî hatibûn girtin, piştî wê bi demekê hevalên wî hatin berdan, lê Bro ji aliyê Asayîşa PYD'ê ve ji Rojava ve hatibû derxistin

Li ser girtina xwe Brahîm Bro gotibû, ew anîne ser sînor û berdane û Asayîşa PYD'ê gef lê xwarine ku eger careke din vegere Rojava, dê were kuştin.

Serokê ENKS'ê anîbû ziman ku ew dixwazin rêveber û sekirdeyên partiyan ji Kurdistanê derxîn û gotibû, 'ji bo ku ji gel re bêjin ev nûnertiya we nakin!' Lê em ê xebata xwe bikin û ji Kurdistana Sûriyê dernakevin. Em ti carî serê xwe ji wan re natewînin.' Bro diyar kiribû ku ew karê ku PYD'ê li hemberî wan kiriye, rêjîma Sûriyê jî nekiriye, lewra rêjîmê ti carî kurdek ji welêt dernexistiye û sirgûn nekiriye.

Piştî sirgûnkirina Brahîm Bro, Serokê Rêveberiya Herêma Kurdistanê (RHK) Mesûd Barzanî pêşwaziya wî kir û nerazîbûna xwe yên berambe kiryarên PYD'ê anî ziman û got 'ev kiryar karekî dijî demokrasiyê ye û xeniqandina azadiyê ye' û şermezar kir.

Herwiha 6 fraksiyonên Parlamentoya RHK'ê jî bi daxuyaniyeke nivîskî kiryarên PYD'ê yên li dijî ENKS'ê şermezar kirin û eşkere kirin ku divê PYD dev ji serkutkirin û girtina endamên ENKS'ê berde. Tê zanîn ku hetna niha zêdetir ji 40 endamên ENKS'ê ji aliyê Asayîşa PYD'ê vê hatine girtin.

Siyasetmedarên Bakurê Kurdistanê jî geşedanên ku di navbera PYD'ê û ENKS'ê de derketine holê û sirgûnkirina Serokê ENKS Brahîm Bro ji Rojava ji BasNûçe'yê re şîrove kirin. Serokên partiyan tekez dikin ku siyaseta PYD'ê ya li dijî ENKS'ê ne rast e û bang li PYD'ê dikin ku li Rojava ji bo pêşeroja kurdan divê yekdengiyek hebe û PYD dev ji kiryarên wiha berde.

### Serokê PDKT'ê M. Emin Kardaş: Ew ne helwesteke rast e

Fikir û ramanên me diyar in em vê helwestê ne helwesteke kurd û Kurdistanî dibînin û ne helwesteke netewî, însanî û şoreşgerî dibînin. Ew helwesteke li dijî xeta kurd û Kurdistanê ye, li dijî xeta netewî û li dijî desthilatdariya saziyên Kurdistanê bi xwe ye. wisa nabe ku 5/6 partiyên Kurdistanî li hev kiribin û saziyek hevpar avakiribin û hevgirtinek çêkiribin û serokek ji xwe re ecibandibin û partiyeke din qaşo ku dibêje 'ez kurd im' ku rabe wana bigre, îşkence bike, bixe zindanê û sirgûn bike. Tu kes vê rewşê napejirîne û em bi tundî li hemberî vê yekê ne. Mafê tu kesî nîne, mafê rêxistineke ku doza kurdan dike an jî ji di nav kurdan de ava bûbe û di peşberî partiyek, saziyek Kurdistanî tê de helwestê ne însanî û kiryarên hovane bikin û wan bigrin radest bikin, ew tiştên gelek xirab in.

### Serokê PSK'ê Mesut Tek: Em siyaseta PYD'ê qebûl nakin

Em wek PSK'ê vê siyaseta PYD'ê qebûl nakin. PYD li Sûriye helwesta PKK'ê birêvedibe, ku ew xizmeta doza kurd nake, ew xebata gelê kurd nake û li pêş xebata gelê kurd dibe asteng li pêşiya destxistina mafê gelê kurd. Divê PKK û PYD'ê û derdorên PKK'ê bizanibin ew helwesta dewleta dagirker bû. Esad wisa dikir. Esad opozîsyona xwe muxalefeta xwe digirt davêt girtîgehan û dikuşt û îdam dikir. PYD xwe ferz kiriye li ser partiyên din, divê dest ji wê helwestê berde û destê xwe dirêjî hêzên din bike. Bila bikaribin bi hev re tîfaqekê bikin û xebata kurdên Rojava pêş bibin. Dem dema firerengiyê ye, rewşa Kurdistanê dest nade yekdengî û yekrengiyê.

### Serokê PAK'ê Mustafa Özçelik: Siyaseta PYD'ê nayên qebûlkirin

Îro li Rojavayê Kurdistanê kurdan tiştekî ku em bêjin qebûlkirî bi dest nexistine. Hîn jî rewşa kurdan ne diyar e, bi wî awayî PYD bi desthilatdariya xwe ENKS tasfiye bike û bigre ew cihê metirsiyê ye. Li wê derê eger kurd li kurdan wî karî bikin ew nayê qebûlkirin. Me bang li Rêveberiya Rojavayê Kurdistanê, PYD û TEV - DEM'ê jî kir, çareya wan tiştan aşkere ye ku ew jî yekgirtin û hevgirtina kurdan e. Metirsiya ewil siyaseta yekdengî û yekrengî, dîktatoriyê ye û kurd nikarin tiştek jî bi dest bixin. Ew siyaseteke wiha ji aliyê dinyayê jî nayê qebûlkirin. Ya din jî kes wê rewşê qebûl nake, kes ne mecbûrî kesî ye ku siyaseta diktatoriyetê, siyaseta li ser hev ferzkirinê qebûl bike.

### Serokê ÖSP'ê Sinan Çiftyürek: Divê ENKS û PYD nakokiyan ji holê rakin

Îro em bêjin dervayê PYD'ê û TEV-DEM'ê ne li ser wan bandoreke mezin heye. Em wê rewşê qebûl nakin. Me şermezar kir û me got, 'gîrtirina berpirsê, berdevkê ENKS'ê Brahîm Bro rast nîne.' Sibê eger meseleya DAIŞ'ê ji holê rabe nakokiyên ereb û kurdan wê derkevin holê. Îro belkî rejîm jî, PYD jî giraniya xwe daye DAIŞ'ê yan rêxistinên din, lê eger sibê du sibê DAIŞ û rêxistinên din ji holê rabin wê demê meseleya girîng ereb û kurd werin hemberî hev. Divê ji îro ve ENKS û TEV-DEM nakokiyên di navbera xwe de ji holê rakin. Navê partiyên hevalên me hemû demokrat in wek Partiya Demokrat, Partiya Demokrata Yekîtî, Demokrat, hwd. Lê kurd ji kurd re nabe demokrat em wê siyasetê rast nabînin. Em dibêjin rejîma dagirkerî re siyaseta aşitî pêk bînin lê em dervayê xwe bi rêxistin û partiyên kurdan re siyaseta aşitî pêk neynîn ew ne rast e.

Eger PYD li Kurdistana Rojava li dervayê xwe siyaset û partiyên kurdan qedexe bike û binçav bike û em bêjin astengî derxe wê demê em bêjin helwesta wê û ya rejîma Baasê de çi cudatî wê hebe? Ew sîstema yek alî em qebûl nakin. Siyaseta Rojava û gelê Rojava jî qebûl nake.

### Serokê PDK Bakûr Sertaç Bucak: PYD tenê li xwe difikire

PYD li dijî hiqûqa navnetewî ye, ji ber ku heqê ti kesî ti dewlet, ti hikûmet nîne ku hemwelatiyan ji welat derxe. Wek meseleya Brahîm Bro de û gelek tiştên din jî heta niha hatine kirin. Ew tişt ji bo tevgera netewî tiştek gelek xerabe û nayê qebûlkirin. Ji ber ku ew desthilatdariya yek partî xuya dike. Em baş dizanin ku meseleya Rojavayê Kurdistanê de pêwîst e ENKS û TEV-DEM hevkariyeke wan ji bo meseleya milî re hebe. Wisa xuya ye ku PYD dixwaze bi serê xwe li wê derê bimeşe û siyaseteke xeter dimeşîne. PYD bi serê xwe nikare meseleya netewî bigihîne encamekê û bî wê siyasetê meseleya Rojavayê Kurdistanê çareser nabe.

Bawer dikim li dinyayê tu kes yekrengiyê qebûl nake. Îro em bêjin ku wek meseleya Menbic û hinek tiştên din pêwendiyên Amerîka û PYD'ê jî hene. Di dinyayê de tu dewletên demokratîk wê siyasetê qebûl nakin. Ez bangî PYD û PKK'ê jî dikim ku yek rengî, yekpartî û yekrêbertî nayê qebûlkirin

### Serokê HAK-PAR'ê Refik Karakoç: PYD bila çavreşiya neke

Li Kurdistana Sûriye çiqas partî û rêxistin hebin bila li hev bikin. Îro ji bo Sûriyê sazûmaneke nû wê bê avakirin. Kurd jî wê demê bila bikaribin mafê xwe biparêzin. Ji bo wê yekîtiya kurdan lazim e û yekgirtiyên kurdan û alîkariya perçeyên din lazim e. PYD li Kurdistana Sûriyê bila çavreşiya neke. Bila ji bo yekîtiyê çi gav heye bavêje. Hemû rêxistinê gelê me yên Kurdistana Sûriyê yek bin, yekdeng bin û yekîtiya xwe çêbikin jî bo mafê gelê xwe gavan bavêjin. Bi hev re pêşniyarî û daxwazên xwe bînin ziman heta ku gelê me rizgar bibe û mafên xwe bi dest bixe. Berê jî û wan rojên dawî ji aliyê PYD hinek astengî hatin derxistin. Me wê demê jî got û îro jî em dibêjin heta ku xwe rast bikin, dev ji çavreşiyê berdin û rê vekin em ê wan rexne bikin.



Elî Xweşmêr

# Berê Enqere li Moskova û Tehranê ye



Piştî êrişên DAIŞ`ê ku Iraq û Sûriyê tevlîhev bûn, hemû welatên ku di siyaseta cîhan û herêmê de aktîf in û dikarin rolekê bilîzin helwesta xwe li hemberî vê meseleyê nîşan dan. Niha 5 sal in ku Rojhilata Navîn tevlîhev e û bi milyonan mirov koçber bûne û sedan hezar kesî jiyana xwe jidest daye. Welatên Rojava û Amerîka li herêmê û li dijî DAIŞ`ê hevpeymaniyeke xurt ava kirin. Piştî ku şerê Sûriyê gurtir bû Tirkiyê jî dijberiya xwe li hemberî rejîma Esad ragihand. Tirkiyê nedixwest êdî desthilata Sûriyê di destê Esad de bimîne, lewma jî alîkariya opozsyona Sûriyê kir. Ji aliyekê ve Îran û Rûsya jî daketin meydanê û wan her du dewletan jî piştgiriya Esad kir. Bi vî awayî nakokî di navbera Tirkiyê û Rûsya de jî çêbûn û çend meh berî niha balafireke şer ya rûsî li ser sinorê Tirkiyê hate xistin ku Rûsya Tirkiye berpirsê vê yekê dizanî. Ev mesele bû sedem ku pêwendiya van du welatan xerabtir bibe. Dewletên Rojava û bi taybetî jî Amerîka di bereya sunneyan de bûn û herwisa li dijî mayîna rejima Esad bûn û alîkariya Artêşa Azad kir. Îran û Rûsya jî di bereya şîe de bûn û piştevaniya rejima Esad kirin. Gelek amaje li ser vê yekê hebûn ku Tirkiye alîkariya komên îslamîst yên radîkal dike û ev mijar bû sedema nakokiya di navbera bereya şîe û bereya sunne. Li ser van sedeman pêwendiya Tirkiyê û Îranê jî hinekî sartir bû, balafira Rûsya hat xistin, têkiliyên Moskova û Enqerê hat redde ya dawîn û kêşeyên nû hatine pêş.

**Serdana Erdoğan a Moskovayê demeke dirêje di rojeva Rojhilata Navîn û cihanê de ye. Şîrovekarên siyasî amaje li ser wê yekê dikin ku Tirkiye ew ê siyaseta xwe ya derve biguherîne û xwe nêzîkî Tehran û Rûsyayê bike. Herwiha Amerîka û Ewropa jî ji vê siyaseta Tirkiyê nerazî ne.**

Piştî ku meseleya derbeyê li Tirkiyê qeyraneke ciddî durist kir û hikûmeta Tirkiyê ev mesele bêdeng kir dest bi qonaxeke nû di siyaseta xwe de kiriye û li ser vê esasê hevdîtina Serokkomar Erdoğan û Serokê Rûsya Pûtîn li Rûsya pêk hat û piştre jî gotineke wisa heye ku Erdoğan dixwaze here Tehranê. Wisa xuya ye ku zivirîneke binyadî di siyaseta Tirkiyê de pêk hatiye. Li gor zanayên warê siyasetê hîn zû ye ku mirov ji van bûyeran bigihêje encamekê ka gelo siyaseta nû ya Tirkiyê ber bi kîjan asoyê ve diçe.

Li aliyê din hin nivîskar û rojnamegerên nêzîkî hikûmetê eşkere dikin ku bi awayekî ne fermî diyalog di navbera Şam û Enqerê jî de hene û ew ê jî di demeke nêzîk de lihev bikin. Herwiha êrişa hêzên rejimê li Hesekê li ser bingehên YPG'ê jî watedar tê dîtin.

### Prof. Dr. Abas Walî: Siyaseta Tirkiyê ya Sûriyê xelet bû

Mamosteyê Zanîngeha Boğaziçiyê û pisporê siyaseta navnetewî Prof. Abas Walî geşedanên dawî yên Rojhilata Navîn, dîplomasiya Îran, Rûsya û Tirkiyê ji BasNûçe'yê re şirove kir. Abas Walî ragihand ku ev qonaxa nû ya siyaseta Tirkiyê bi Rûsya û Îranê re zêdetir di warê aboriyê de ye û pir hêsan nîne ku di demeke nêz de hertişt eşkere bibe. Walî got ku siyaseta Tirkiyê li hemberî Sûriyê bi giştî xelet bûye û encama van siyasetan jî ji bo Tirkiyê re gelekî xerab bûye.

Akademîsyen Walî balkişande ser dîplomasiya dewletên navborî û wisa domand: "Bi baweriya min ev tişt zêdetir ji ber şert û mercên Tirkiyê yên piştî derbeyê ye. Wisa ku dewletên rojavayî li ser meseleya Tirkiyê helwest girtine, tevî ku wan welatan derbe mehkûm kirine lê di heman demê de li dijî siyasetên niha ya cenabê Erdogan in ku niha teqrîben 80-85 hezar kes hatine girtin. Ew li dijî vê meseleyê ne herwisa Amerîka li dijî lawazbûna Artêşa Tirkiyê ye ji ber ku Artêşa Tirkiyê amûreke eslî ya siyaseta Amerîka û NATO`yê li vê herêmê."

### "Erdoğan li Rûsya negihiştiye encamekê"

Prof. Walî tekezî li ser wê yekê kir ku dîplomasiya Rûsya û Tirkiyê niha bêtir li ser aboriyê ye û daxwazên Erdoğan ê li ser Helebê ji aliyê Pûtin ve nehatine qebûlkirin û wiha domand: "Çareserkirina van kêşeyan hem ji hêla aborî ve hem jî hêla siyasî ve gelekî girîng e. Stratejiya ku Tirkiyê ji bo Sûriyê re girtibû ber xwe bi giştî xelet bû. Encameke wê ya pir xerab hebû. Û piştî ku Tirkiyê li balafira şer ya Rûsya xist, Rûsya wisa kir ku destê Tirkiyê bi giştî ji Sûriyê kurt bû û êdî nikare ne bi awayekî leşkerî û ne jî bi awayekî siyasî li ser meseleya Sûriyê tesîrê bike. Li ser van hemû meseleyan Tirkiyê di vê qonaxê de dixwaze siyaseteke nû li herêmê hilbijêre lê wisa xuyay ye ku hevdîtina Erdoğan û Pûtîn li Rûsya negihîştiye encamekê, bi taybetî jî li ser meseleya Sûriyê. Wisa diyar e ku Erdoğan xwestiye dorpêça li ser Helebê bê şikandin lê ev yek nehatiye kirin. Di heman demê de Rûsya li ser meseleya aborî sekiniye û tiştê girîng ji wan re meseleya aborî ye û bi baweriya min zêdetir fişar li ser Erdoğan e ku ew sînoran bigirin ku DAIŞ û islamîstên tundrew nekarin ji wir derbasî Sûriyê bin."

### "Îran – Rûsya dixwazin Tirkiye nêzîkî wan bibe"

Walî da zanîn ku Komara Îslamî ya Îranê dixwaze Tirkiyê nêzîkî xwe û Rûsyayê bike û Ewropa û Amerîka jî ji vê rewşê aciz e. Herwiha Îran û Rûsya dixwazin Tirkiye siyaseta xwe ya li hember Sûriyê jî biguherîne û Tirkiye bi mayîna Esad razî bibe. Walî hevpeymaniya PYD'ê û Amerîkayê jî bi bîr xist û wiha behsa egera guherînên nû li Sûriyê kir: "Di vê çarçoveyê de ku pêwendiya Tirkiyê li gel Ewropa û Amerîka de hinekî sar bûye, Îran dixwaze siyaseta Tirkiyê ber bi xwe û Rûsya ve bikşîne. Û dixwazin Tirkiyê mecbûr bikin ku ew siyaseta xwe li hemberî Sûriyê bigherîne. Hedef ji vê guherînê jî ew e ku ew mayîna rejîma Esad qebûl bike. Wisa diyar e ku Tirkiyê jî ev yek bi awayekî nîvçe qebûl kiriye. Yanê nûnerê Tirkiyê li Rûsya gotiye ku kêşeya me ji bo beşdarbûna Esad ji bo gotûbêjan nîne lê mesele ew e ka gelo ev tişt bi giştî qebûl kirine yan na. Eger bi giştî qebûl kiribe ji siyaseta Amerîka dûr dikeve. Eger qebûl nekiribe ji siyaseta Rûsya dûr dibe. Hedefa sereke ji van hatinçûnan guherîna siyaseta Tirkiyê ye, bê hêsanî nikarin bigihêjin armancên xwe. Tirkiyê divê beşeke zêde ji siyasetên xwe li herêmê biguherîne. Yek ji wan ew e ku Tirkiye bikare qebûl bike ku Esad li Sûriyê bimîne ji dêvla vê yekê jî kurdên Rojava nemînin. Ev yek jî nediyar e ji ber ku PYD hevpeymana Amerîka ya leşkerî û stratejî li herêmê ye û diyar nîne ku di vê rewşê de ku Erdoğan xwe nêzî Rûsya kiriye, Amerîka jî bi hêsanî piştê PYD`ê bernade. "

### "Tirkiye û Îran li ser meseleya Rojava hemfikir in"

Abas Walî bal kişand ser pêwendiya Îran û Tirkiyê û got tevî ku hin kêşeyên binyadî di siyaset û pêwendiya van du welatan de heye lê ew li ser meseleya kurdan li Rojava hemfikir in û herdu welatên naborî naxwazin ku herêmeke serbixwe ya kurdî li Rojava çêbibe û axaftina xwe wisa bi dawî kir: "Bi baweriya min di vê qonaxê de ku Tirkiyê xwe nêzî Îran û Rûsya kiriye, dibe ku pêwendiyên aborî yên Tirkiyê bi Îran û Rûsya re xurt bibin lê ji hêla siyasî ve hîn zû ye û tiştekî diyar nîne ji ber ku kêşeyên wan yên siyasî gelekî zêde ne. Tirkiye û Îran li ser meseleykê xaleke wan ya hevbeş heye. Ew jî ew e ku nehêlin herêmeke serbixwe ya kurdî li Rojava çêbibe. Bi nêrîna min niha helwesta Rûsya li ser meseleya Rojava nediyar e ji ber ku Rûsya derbarê pêwendiya nêzîk ya PYD û Amerîkayê nîgeran e."

# HDP li dervayê proseya destûrê dimîne

**Rezan Karwan**



Li Tirkiyê piştî hewldana derbeya 15'ê Tîrmehê di navbera opozîsyon û hikûmetê de diyalog peyda bû. Serokên CHP û MHP'ê li qesra Serokkomariyê ji aliyê Erdoğan ve hatin pêşwazîkirin piştre jî rêyadarên her sê partiyan bi mîtîngeke girseyê ya li Yenikapı ya Stenbolê derketin pêşberî gel. Lêbelê Partiya Demokratîk a Gelan (HDP) ku niha li Meclîsê weke partiya sêyem e, li derveyî vê diyaloga navbera partiyan de hat hiştin.

Piştî vê nêzîkbûn û diyaloga di navbera her çend partiyan de, biryar hat girtin ku xebatên Destûra Nû jî bên destpêkirin. Lêbelê HDP ji bo xebatên Destûra Nû jî nehat vexwendin û partiya sêyem a Tirkiyê li dervayê proseyê ma. Civîna ewilî ya ji bo çêkirina Destûreke Nû 12'ê Tebaxê roja Înê pêk hat. Civîna duyem jî dîsa bi beşdarbûna nûnerê AKP'ê Abdülhamit Gül, nûnerê CHP'ê Bülent Tezcan û nûnerê MHP'ê Mehmet Parsak li parlamentoyê pêk hat. Guhertina destûra bingehîn, daxwaza hemû beşên civakê ye û her aliyek li gor fikr û hizrên xwe destûrekê tahayyul dike.

Xelkê kurd bi salane êşên destûra heyî dikşînin ku ji aliyê cuntaya derbekar General Kenan Evren û sîstema wî ve hatibû çêkirin. Kurdan di her warî de ji ber vê destûra ku li ser bingeha tekparêziyê hatiye avakirin û li ser hebûna etnîkekê hatiye pêkanîn, gelek êş û azar kişandine. Piştî hewldana derbê hêviya diyaloga di navbera civak û partiyan de bilind bûbû, ji ber ku herkesek li gor derfet û şiyana xwe li dijî hewldana derbê derket û piştevaniya xwe bi hikûmeta ku bi dengên xelkê hatiye ser kar re ragihandibû. Ev diyalog bi awayekî kismî pêk hat û CHP, MHP û AKP li hev civiyan. Lêbelê HDP a ku dengê nêzî 6 milyon kesan girtiye û bi 59 parlamenteran de di meclîsa Tirkiyê de di rêza sêyem de ye, li dervayê danustendinên destûrê ma.

Ev yek jî hêviyên destûreke berfireh ku hemû beşên civakê bigire nav xwe û kêşeyan ji nav bibe lawaz dike.

Parlamenterên HDP'ê, AKP'ê û CHP'ê li ser xebatên Destûra Nû û dervehiştina HDP'ê ji BasNûçe'yê re axivîn.

**Erdoğmuş: Proseyekî ku HDP'ê li derve dihêlin birêve diçe**

Parlamenterê HDP'ê yê Amedê Nimetullah Erdoğmuş di derbarê geşedanên dawîn yên li Tirkiye û herêmê û xebatên Destûra Nû de ji BasNûçe'yê re ragihand ku proseya ku HDP'ê li derve dihêlin di meriyetê de ye. Erdoğmuş diyar kir ku hevdîtina serokan jî, kombûna hemû partiyan jî pêşniyarên partiya wan bûn, lêbelê niha her sê partî bêyî HDP'ê ketine nav xebatan. Erdoğmuş axaftina xwe wiha domand: "Proseyekî ku HDP'ê li derve dihêlin birêve diçe. CHP jî tevlî karwanê wan bû. Ji xwe MHP û AKP di warê zîhniyetê de ji hev ne dûr in. Berê kêm jî bûya cudahiyek hebû, lê niha li ser heman hişmendiyê ne. Hem hilbijêrên wan, hem jî kadroyên wan yên siyasî li ser her çar bendên tekparêz ku jê re dibêjin Rabîa, mutabakata xwe pêk anîne. Pêşniyara kombûna rêberan jî ji Birêz Demirtaş hat. Me got bila her çar partî kom bibin, manîfestoyekê amade bikin û bi mîtîngeke girseyî bi gel re eşkere bikin bi beşdariya serokên hemû partiyan û Serokkomar. Lêbelê mixabin HDP li derve hiştin."

**"Niha rewşeke derasayî birêve diçe"**

Di berdewama axaftina xwe de Erdoğmuş diyar kir ku problema wan bi vê zîhnîyetê re ye û got ku eger HDP li derveyî van partiyan xuya bike, ev ji cudahiya di navbera hişmendiya wan û partiyên din e û wiha berdewam kir: "Mesele zîhnîyet e. Lê dibe ku partî rûnin, baxivin û li gor wê gav bavêjin. Di mijara zîhnîyetê de di navbera HDP û MHP, AKP û CHP'ê de cudahî heye. Em maf û azadiyan ji bo siyaseta xwe weke bingeh dibînin. Eger ew jî werin ser xeta azadiyan, dibe ku em li hev bikin. Eger bi dervehiştina maf û azadiyan rêkeftinek, mutabakatek hebe, navê wê ne demokrasî ye. Niha rewşeke derasayî birêve diçe, lê ev xebata me asteng nake, em ê di her rewşê de ji bo aşitî, demokrasî û azadiyan têbikoşin. Herwiha em di vî warî xebatek an çirûskekê jî bibînin ne hewceye ku em vexwînin, em ê bi xwe biçin û beşdar bibin. Bo me ya girîng azadî ye."

**"Pêleke netewperestiyê bilind dibe"**

Parlamenterê HDP'ê got "diyar e ders ji hewldana derbê ya 15'ê Tîrmehê nehatine derxistin û heman siyaseta şaş berdewam dikin" û wiha axivî: "Di 15'ê Tîrmehê de jî me dît û beriya wê jî gelek caran hewldan çêbûn ku civaka Tirkiyê bînin hemberî hev. Lêbelê dîsa jî desthilat di heman pêkanînên xwe de bi rijd e. Beriya her tiştî divê hessasiyet û şefafiyetek hebe. Me pêşniyaza avakirina komîsyonekê kir bo lêkolînkirina hewldana derbêyê de. Lêbelê AKP'ê endam nade û beşdar nabe. Divê ev hewldan bi hemû zelalî û aliyên xwe ve bê derxistin. Lêbelê berovajîvê yekê hersê partî li ser netewperestiya xwe bûne yek. Em cihê talûkê ye. Niha rewşa herêmê jî aloz e."

**Metiner: Divê HDP xwe ji PKK'ê dûr bixe**

Parlamenterê AKP'ê yê Stenbolê Mehmet Metiner li ser xebatên Destûra Nû û dervehiştina HDP'ê ji BasNûçeyê re axivî. Metiner got ku divê HDP ewilî dûrahiyekê, cudahiyekê bixîne navbera xwe û PKK û wiha axivî: "HDP alîgiriya rêxistineke ku niha bi Tirkiyê re di şer de ye, dike. Hebûna wan ya li parlamentoyê vê rastiyê nagûhere. Hindî ku HDP dûrahiyekê nexîne navbera xwe û PKK'ê em ne alîgirên rûniştina li gel HDP'ê ne. Em weke Ak Partî li dijî wê ne ku di rewşeke wiha de HDP beşdarî proseyê bibe. Em di navbera DAIŞ û PKK'ê de cudahiyekê nabînin. Eger partiyeke DAIŞ'ê li parlamentoyê be gelo ev wê were qebûlkirin? An jî partiyek eşkere piştgiriyê bide rêxistina Gülen ev dê were qebûlkirin? Hebûna HDP'ê li parlamentoyê rewşeke fîlî ye. Beşdarî hilbijartina bûye û hatiye parlamentoyê. Lêbelê herkes dizane ku HDP piştevaniya terorê dike. Niha hebûna wê wek partiyeke sêyem di parlamentoyê de vê rastiyê bo me nagûhere. Ji bo me divê HDP ewilî xwe ji PKK'ê dûr bixe, ev girîng e."

Mehmet Metiner ragihand ku ew niha bi encamên hewldana derbê ve mijûl in û îddîa kir ku di vê paqijkirinê de jî PKK derdikeve hemberî wan û got, "Dema em rêxistina FETO'yê paqij dikin, dîsa PKK derdikeve hemberî me û em PKK'ê dibînin. Ev herdu rêxistin têkilî hevdu bûne. Em dibînin ku derbekar diçin xwe disperin PKK'ê. Di êrişên dawîn de jî herçiqas PKK xuya bike jî em dizanin ku li pişt van kiryaran jî FETO heye."

**"Hêviya proseyekî mîna berê ne rasteqîn e"**

Parlamenterê AKP'ê li ser egera destpêkirina proseyekî nû jî wiha got: "Dema me bi terorê re tekoşîn dikir, dîsa PKK çû aliyê welatên ku li dijî Tirkiyê ne. Di vê rewşê de hêviya proseyekî mîna berê ne rasteqîn e. Em ê bi her awayî diyaloga xwe bi xelkê kurd re berdewam bikin. Ji bo hemwelatîbûna wekhev em her gavê davêjin. Lêbelê em PKK'ê weke aktorekî di siberoja kurdan de nabînin. Herwiha em HDP'ê jî weke nûnerê gelê kurd û herêmê nabînin." Metiner got ku eger çek bên danîn ew ê dîsa vê mijarê baxivin û wiha dewam kir: "Eger PKK çekên xwe deyne û îradeyek bê dîtin helbet wê bê rûniştin û hertişt dê were axaftin. Lê di vê rewşê de proseyek wek berê ne mumkune birêve biçe. Bi daxwazên ku li hemberî çek danînê xweserî û otonomî ev yek nayên qebûlkirin û mase ava nabe. Divê bêyî şert û merc çek bên danîn. Eger PKK bixwaze bibe parçeyekî siyaseta demokratîk û di vî warî de gavên şênber bên avêtin, ev wê were nirxandin."

**Gök: Divê HDP jî beşdarî xebatên Destûrê bibe**

Parlamenterê CHP'ê yê Enqerê Levent Gök jî li ser vê mijarê ji BasNûçe'yê re got ku CHP daxwaz dike ne tenê partiyên li parlamentoyê yên derve jî û rêxistinên sivîl jî beşdarî proseya çêkirina Destûra Nû bibin û wiha axivî: "Helwesta me di vê mijarê de diyar e. Em dixwazin hemû beşên civaka Tirkiyê daxilî proseye çêkirina Destûra Nû bibin. Helbet me bi rengekî zelal raghand ku divê HDP jî di çêkirina Destûrê de cih bigire."

**"Divê hemû kêşe li parlamentoyê werin axaftin û çareserkirin"**

Gök herwiha diyar kir ku divê li Tirkiyê rewş bê asayîkirin û ji bo rêkeftin û destûreke ku hemû beşên civakê bigire nav xwe divê tu kes li derve neyê hiştin û ragihand: "Ji ber vê yekê her mijara ku dibe sedema pevçûnan, aloziyan û civakê ji hev dûr dixe divê li parlamentoyê bê axaftin û gotûbêjkirin. Armanca me ew e ku em konsensuseke berfireh ava bikin. Hemû hewldanên me bo jinavbirina kêşeyan e. Helbet divê HDP jî di proseya çêkirina Destûra Nû de cih bigire û li derve neyê hiştin."

## Navenda xebatên kurdnasiyê:

# Nûbihar Akademî

Helgurd Colemergî

Nûbihar Akademî ji aliyê 'Türkiye Akademik Dergiler Rehberi'yê ve wekî govareke akademîk a navnetewî hatiye tescîlkirin. Ev govara kurdolojiyê cih dide her cûre nivîsên zanistî û bi nêrîneke multîdîsîplînerî nivîsên li ser zanistên ziman, edebiyat, çand, huner, aborî, civakî, olî û hwd... di nava xwe de dihewîne. Di govarê de nivîsên wekî gotar, werger, tîpguhêzî û dokument çap dibin. Gotarên ku ji bo weşandinê tên şandin bi sîstema 'hekemtiya kor' ji hêla hekemên pispor ve tên nirxandin.

Nûbihar Akademîyê di sala 2014'an dest bi çapê kir û heta îro 4 hejmar derxistîne. Govar salê du caran di demsalên bihar û payîzê de tê belavkirin û zimanê nivîsan bi hemû zaraveyên kurdî û ingilizî ye. Xwediyê govarê û Berpirsê Karê Nivîse li ser navê Pak Ajansê Süleyman Çevik e û Edîtorê Giştî jî ji Zanîngeha Artukluyê Serokê Beşa Ziman û Edebiyata Kurdî Doç. Dr. Abdurrahman Adak e. Herwiha akademisyênên Beşa Kurdolojiyê y ên Zanîngeha Artukluyê di çapkirina govarê de barekî giran girtine ser milên xwe.

Aliyê din Nûbihar Akademî ji çar perçê Kurdistanê û cîhanê gelek akademîsyênên naskirî û bijarte di nava xwe de dihewîne. Di nava desteya edîtoriyê de Hayrullah Acar, Tahirhan Aydın, Yusuf Baluken, İbrahim Bor, Zülküf Ergün, Ayhan Tek û Vehbi Türel; herwiha di desteya şêwrê de Salih Akın, Hamit Bozarslan, Martin Van Bruinessen, Celîlê Celîl, Philip Kreyenbroek, Abdulwahab Khalid Musa, Abbas Vali û Mesut Yeğen cih digirin.

Wekî tê zanîn govar û Weşanxana Nûbiharê ji sala 1992'an heta îro li ser kurdan berhemên edebî, tarîxî, çandî çap dike û govara Nûbihar di nava govarên kurdî de govara herî temendirêj e. Piştî 22 salan, di sala 2014'an de, Weşanxaneya Nûbiharê Nûbihar Akademî çap kir. Edîtorê Giştî ê Nûbihar Akademiyê Doç. Dr. Abdurrahman Adak li ser derketin, naverok, proje û xebatên govarê ji BasNûçe'yê re axivî. Adak radigihîne ku Nûbihar Akademî yegane govar e ku li Bakûr bi kurdî û îngilîzî di asta navnetewî de weşanê dike. Herwiha Adak dide zanîn ku Nûbihar Akademî di Tirkiye Akademik Dergiler Rehberiyê de wekî govareke akademîk a navnetewî hatiye tescîlkirin.

### "Nûbihar Akademî Govarekî zanisti ye"

Adak balê dikşîne ferqa Nûbihar û Nûbihar Akademiyê û radigihîne ku Nûbihar Akademî govarekî zanisti ye: "Her du govar jî di warê kurdolojiyê de weşangeriyê dikin, ferqa di navbera Nûbihar û Nûbihar Akademîyê de, di heman demê de ferqa di navbera govareke populer û govareke akademîk nîşan dide. Eger em di vê çarçoveyê de li ser ferqa her du govaran rawestin, em dikarin bibêjin ku Nûbihar govareke populer e ku ji salên notî ve di warê çand, ziman, edebiyat û hunerê de bi kurdî weşangeriyê dike. Lê Nûbihar Akademî çawa ji navê wê jî diyar e, govareke akademîk e ku weşangeriya akademîk û zanistî dike. Divê di govarekî akademîk de licneyên edîtor, şêwirmend û hekeman hebin. "

Adak bahsa ferqeke din ya navbera hurdu govaran dike û balê dikşîne ser şêweya nivîsan: "Çawa ji navê Nûbihar Akademîyê diyar e, lêkolînên ku di wir de bên weşandin divê akademîk bin û li gorî rêzikên lêkolînên zanistî hatibin amadekirin. Helbet ev nayê wê wateyê ku nivîsên ku di Nûbiharê de tên weşandin nekêrhatî ne. Lêbelê ji ber ku ew hin pîvanên akademîk di xwe de nahewînin nakevin kategoriya gotarên akademîk."

### "Piştî beşên kurdolojiyê vebûn Akademî derket"

Adak balê dikşîne ser derketina Akademiyê ku bi şert û mercên siyasî, civakî ên kurdan ve girêdayî ye û wiha didomîne: "Piştî 20 salan, di sala 2010'an de li Tirkiyeyê di warê akademîk de hin pêşketin çêbûn û di van şertan de jî Nûbihar Akademî derket. Di vê qonaxa nû de li Zanîngehên Mêrdîn, Mûş û Bingölê beşên lîsansa kurdî; li zanîngehên Dêrsim û Bîngolê jî beşên lîsansa zazakî vebûn. Bi vî awayî cara yekem li Tirkiyeyê perwerdeya akademîk a kurdolojiyê dest pê kir. Em dixwazîn govareke me ya sivîl a taybet hebe ku bi dezgeyên fermî re eleqedar nebe."

Herwiha Adak dibêje ku govarê hem çap dikin hem jî li ser înternetê bi awayekî dijîtal di malpera 'nubiharakademi.com'ê de belav dikin.

### "Heta îro 20 gotar hatine çapkirin"

Adak behsa naveroka govarê dike û dibêje ku heta îro 20 gotar hatine belavkirin: "Dema em li qadên van gotaran dinêrin, em dibînin ku ji dîrokê 3 gotar, ji perwerdeyê 3 gotar, ji ziman 3 gotar, ji edebiyata kurdî ya nûjen 2 gotar, ji felsefeyê 2 gotar, ji civaknasiyê 2 gotar hene. Çawa ku tê dîtin, naveroka govarê ji hînterlandeke pir berfireh a zanistên sosyal pêk tê."

Aliyê din Adak destnîşan dike ku ji bilî gotaran di her jimarekê de cî didin dokumenteké û ji bo wê beşeke serbixwe cihê kirine û di beşa 'Werger'ê de jî gotarên girîng ên kurdolojiyê, ên hatine jibîrkirin û klasîk bi bal kurdî yan îngilîzî ve didin wergerandin û pêşkêşî cîhana kurdolojiyê dikin.

### "Li seranserê cîhanê pisporên kurdolojiyê Nûbihar Akademî teqdîr kirin"

Adak li ser tesîra Nûbihar Akademiyê dibêje ku Nûbihar Akademî bi taybetî ji bo kurdolojiyê a li Tirkiyeyê xîmekî girîng e û ji aliyê akademîsyen û pisporên kurdolojiyê yên seranserê cîhanê ve hatiye teqdîrkirin.

Adak wiha behsa tesîra govarê dike: "Dilsozên kurdî ji Nûbihar Akademiyê hez kirin û gelekî qîmet pê dan. Çi li Ewropa û Emerîka, çi li Kurdistana Başûr û Kurdistana Rojhilat ferq nake, ji aliyê akademîsyen û pisporên kurdolojiyê yên seranserê cîhanê ve jî hate teqdîrkirin. Bi baweriya min Nûbihar Akademî bi taybetî ji bo cîhana kurdolojiyê li Tirkiyeyê xîmekî girîng e. Nûbihar Akademiyê derfetek pêşkêşî xwendekarên lîsansê kir ku di mawеya xwendekariyê de govargeriya akademîk binasin. Ji bo lêkolîner û akademîsyenan jî derfeta şopandina gotarên akademîk saz kir û ji bo wan bû platformeke guncaw ku gotarên xwe tê de biweşînin."

### "Yegane govar e li Bakûr"

Adak radigihîne ku Nûbihar Akademî yegane govar e ku li Bakûr bi kurdî û îngilîzî di asta navnetewî de weşanê dike û wiha dewam dike: "Li Başûr govarên akademîk ên hemû zanîngehan hene. Herwiha li Ewropa jî berê bi navê Kurdish Studiesê govareke akademîk derdiket. Piştre rawestiya, lêbelê berî niha bi du salan dîsa dest bi weşanê kir. Li Bakûr wekî govareke akademîk cara yekem Nûbihar Akademîyê dest bi weşanê kir. Piştî Nûbihar Akademiyê, li Zanîngeha Bîngolê jî govareke kurdolojiyê dest bi weşanê kir. Nûbihar Akademî ne yekemîn govara akademîk a kurdolojiyê ye, lêbelê bi rehetî dikare bê gotin ku yegane govar e ku li Bakûr bi kurdî û îngilîzî di asta navnetewî de xebatê dike."

Adak bal dikşîne ser projeyên govarê ên siberojê jî: "Ji bo me tişta herî girîng ew e ku Nûbihar Akademî ji aliyê îndeksên akademîk ên navnetewî ve bê naskirin û bikeve nav lîsteyên wan îndeksan. Bi vî awayî govareke kurdolojiyê dê di asta navnetewî de bê şopandin."




Govara 'Nûbihar Akademî' govareke bihekem, akademîk û navnetewî ye û di warê kurdolojiyê de berhem û nivîsên zanistî çap dike. Li Bakûr cara yekem e govareke zanistî, akademîk û bi hemû zaraveyên kurdî û îngilîzî çap dibe. Nûbihar Akademî, bi rêbazeke akademîk cih dide nivîsên li ser ziman, edebiyat, çand, huner, civak, olî û hwd...



Kerem Arî

## Mele Şêxmûs

# Hafiz û dengbêjê Mem û Zînê

Mûzîka kurdî di eslê xwe de anonîm û devkî ye. Kurdan gelek reng, êş û çanda xwe bi riya stran û dengbêjan zînde hiştine. Ji ber vê yeke dengbêj û kilam û stranên wan cihekî taybet di nava kurdan de heye. Ew, di folklor û çanda kurdî de gelek bihêz in. Bi sedan sal û zeman in dengbêjan di nava civaka kurdî de cih girtine û bûne pira ziman û çanda kurdî.

Dengbêj palê xwe didin civakê û ji bo hest, bîr û kultura civakê erka awêneyê dibînin. Ew her çîrok û qesîdeya dibihîzin ji ber dikin û di nava civakê de distêrin. Naveroka stranên dengbêjan gelek rasyonel û zelal in. Dengbêj bo stranên xwe amûran ji civakê digirin. Çîrok, efsane, qehremanî, eşq û evîn û hwd. bi selîqe tînin ziman. Ew gelek bi bîr û hizr in. Her qesîde, stran, çîroka dibihîzin hifz dikin û didin nifşên nû.

Birekî dengbêjan di nava kurdan de weke 'mitrib' hatine binavkirin û ev dengbêj jî der bi der digerin. Dengbêjên herî navdar û niyas dengbêjên di nava civakê de ne. Ev dengbêj efsane, çîrok, bûyerên dîrokî û hwd di nava xelkê de belav dikin û distirên. Gelek caran xelk kom dibe û dîwan tê danîn û dengbêj bi rêzê stranan dibêjin. Dengbêj di nava civaka kurdan de stranan kurdî distêrin. Gelek peyvên resen û kevin bi saya van dengbêjan heta îro hatine. Di pêşketina zimanê kurdî de jî stran û dengbêjan rolekî mezin lîstiye.





Dengbêjî û strana kurdî cihekî gelek taybet di nava civaka kurdî de girtiye. Dengbêj bi sedan sal in di nava civaka kurdî de sertext in. Ew, jiyana civakê bi avayekî rasyonel û selîqe distêrin û ji bo çand û zimanê kurdî bûne pirde. Herwiha erbane ji bo mûzîka kurdî amûrekî sereke ye. Dengbêj û hafiz Hecî Şêxmûs ji sala 1957'an heta niha dest bi gotina qesideyan û stranên kurd kiriye, di heman demê de hostayê erbanê ye jî.

### Erbene bûye amûreke sereke

Di mûzîka kurdî de amûrên cûr bi cûr tên bikaranîn. Amûrên sereke bilûr, dûdûk, zirne, duzare, tembûr (bisk), santûr, dembilk, dahol, saz û erbane ne.

Li Rojhilata Navîn û Kurdistanê erbane amûrekî herî qedîm e. Erbane bi taybet ji aliyê dengbêjan ve gelek tê bikaranîn. Herwiha di rîtûelên ayînî de cihekî girîng digire. Bi taybet ji bo grûbên dînî. Herwiha li Kurdistanê naqşîbendî, qadîrî, mewlewî û komên din ên olî erbanê xwedî derketine.

Herwiha medreseyan ji bo pêşketina kurdî rolekî sereke lîstine. Di medreseyên Kurdistanê de kurdî tê xwendin û nivîsîn. Mela û şêxên kurdî gelek pirtûkên kurdî nivîsîne. Bi saya medreseyan kurdî bûye zimanê perwerdehî û nivîsê. Gelek dengbêj, alim, zana ji van medreseyan derketine û xizmeta kurdî kirine. Dengbej û hafizê navdar, Hecî Şêxmûsê Mêrdînî jî yek ji wan alim û zanayan kurda ye. Hecî Şêxmûs, ku li medeseyên kurdî perwerdehî dîtiye zêdetirî 50 sal in di nava xelkê de distêre û tê nasîn. Ew li Ziyareta Sultan Şêxmûsê dimîne û li wir ji xelkê re qesîde û stranên kurdî dibêje. Her wiha bi erbeneya xwe jî xelkê ku diçe serdana wî dikin mest dike. Hecî Şêxmûs jiyan û serpêhatiyên xwe ji BasNûçeyê re anî ziman. Wî di 1957'an dest bi erbanjeniyê û gotina stranan kiriye û heta niha dewam dike û di nava civakê de gelek rêz lê tê girtin.

### "60 sal in stran û qesîdeyan dibêje"

Dengbêj Hecî Şêxmûs di sala 1946'an de hatiye dinê û 1957'an dest bi erbanê û mûzîkê kiriye: "1953'an bavê min koça dawîn kir. Xuşk û brayên min tune bûn. Ez û diya xwe bi tenê man. Diya min ji min re got bixwîne. Em feqîr bûn. Ez diçûm ber destê mela û min dest bi xwendinê kir. 1959'an de ez êdî çûm ger û seredanan. Em çûn seredanan, lê civakekî pir giran hebû. Însanên mela li wir bûn. Alim û zana ali wir bûn."



### "Kê li bal min tiştek bigota min hifz dikir"

Hecî Şêxmûs dibêje ku kê li cem wî qesîde û stran bigota wî ji ber dikir û ji bilî dersên medreseyan tu dibistan nexwendiye: "Min mewlûd û Quran xwendin. Ji sala 1960'an heta niha ez qesîdeyan dibêjim û ev yeke bi saya Xwedê û dostan çêbû. Kî xwe ji Xwedê dûr nexe wê biserkeve. Ez ne tevlî siyasetê ne jî tevlî karê Xwedê dibim. Siyaset derew e. Quran diyar dike ku 3 delîlên munafiqan hene. Yek ew e ku dema diaxive derewan dike, duyem ew e ku soz bide û sozê xwe cih neyne. Ya sêyem jî ew e ku îxanetê li emanetî dike. Mixabin di nava civaka me de ev her sê jî hene."

### "Min di filmê Mem û Zîn de li erbanê xist"

Hecî Şeyhmûs, her tim mirovên mela û dîndar re geriya ye û çûye seredanan û di civakan de her tim qesîde gotine û Quran xwendine. Herwiha wî gelek stranên kurdî jî ji ber kirine: "Dema bavê min çû rehmetê tiştek li mala me nebû. Di 1970'ê de ez û dayika xwe em çûne hecê. Di 90'an de ji min re gotin were di fîlma Mem û Zîn de li erbanê bide. Min got fîlma Mem û Zîn çawane lawo? Gotin divê tu bê bilîzî. Em çûn. Ji min re gotin li erbanê de. Ez rabûm min di fîlmê Mem û Zînê de li erbanê xist. Di 1993'an de ez ji gund derketim. Dewletê em li ser gundan rakirin. Min bi wan re go, 'Min tiştek nîne. Min ne xanî, ne maaş û ne jî erd heye. Cihekê bidin min ez ê herim.' Îcar cerdevanan ez îxbar kirim û gotin 'ev kes alîkariya PKK'ê dike." Li Hafiz Hecî Şeyhmûs ji ber gotina stran û qesîdeyên kurdî doz hatine vekirin û 10 meh cezayê girtîgehê li wî hatiye birin.

Hafiz Şêxmûs, tekez dike ku ew dostê hemû misilmana ye û di nava xelkê de qîmetê wî heye. Şêxmûs wiha behsa danûstendina xwe û civakê dike: "Ez kurd im. Ez hevalê tirk, ereb û farisa me jî. Ez kurdbûna xwe înkar nakim. Kî ji bo me baş be ez hevalê wan im û em hemû misilman in. Şukir bo Xwedê ev rûmet ji me re daye. Ez diçim ku misilman ji min hez dikin. Înşaallah jî dest vê rûmeta xwe bernadim. Dilê min bixwaze ez diçim li bal dost û hevalên xwe. Xelk gelek xatira min digire. Mesele niha ez minûbûsê sîwar bûm, eger ez pere nedim jî tiştekê ji min re nabêjin."

## Doç. Yılmaz Özdil:

# Divê navek li sînemaya kurdî bê danîn

**Mehdî Caferzade**

Doç. Dr. Yılmaz Özdil li Colemêrgê ji dayîk bûye. Li Zanîngeha Enqerê beşa Rojnamgerî xwendiye. Piştre ji bo lîsansa bilind û doktorayê çûye Fransayê û li Zanîngeha Sorbonne Nouvelle xwendiye. Özdil pisporê sînemayê ye û derbarê sînemayê de gelek berhemên wî hene. Özdil niha li Zanîneha Artukluyê di beşa Kurdolojiyê de mamostetiyê dike û li wê derê jî xebatên xwe yên derbarê sînemayê de berdewam dike. Doç. Dr. Yılmaz Özdil pirsên BasNûçe'yê bersivand.






**Yekem car çi wext behsa sînemaya kurdî hat kirin? Piştî kîjan bûyerê têgiha sînemaya kurdî peyda bû?**

Kêşeya kurdan nebûna nasnemeyek kurdî, fermî-netewî û nebûne dewletekê ye. Heger ew ne xwedî dewlet û nasnemeyeke fermî be, sînemaya wan li gorî kîjan krîterê bê binavkirin. Nêrîna giştî ew e ku sînemaya kurdî li gorî bikaranîna zimanê kurdî û li gorî nasnemeya kurdên derhênêr û hebûna mijarek polîtîk ku giredayî konteksta polîtîk û dîrokî ya kêşeyên kurdî ye. Ne pêwîst e hemû bi kurdî bên çêkirin. Lê divê zîmanê kurdî di nav de hebe û bikaranîna mijarên giredayê meseleyê û dîroka kurdî jî di nava wê de cih bigirin. Ew her 3 pîvan ji bo binavkirina sînemeya kurdî pir girîng in. Em neçar in sînemaya kurdî bi nav bikin. Yanî dikare jê re bê gotin 'sînemaya kurdîstanî' jî. Dikare jê re bê gotin 'sînemeya kurdan' jî. Bes kategorîzekirina sînemaya kurdî pêwîstiyekek gelekî girîng e û heqê jî. Li hemû dinyayê binerin gel ên wekî ermenî, roman ku li dîasporêyê dijîn, sînemaya wan jî heye. Hewceyê sînemaya kurdî bê penasekirin. Penasekirina sînemaya kurdî ne bi destê hin kesan hatiye kirin yan jî bi navê sînemeya kurdî hatiye bikaranîn. Ev nav di navbera karmendên sînemeya kurdî de peydabûye. Pêwisteyeke ji bo kategorîzêkirin û danasîna fîlmên bi zimanê kurdî yan jî ji aliyê kurdan ve bê çêkirin. Divê nav bibe "sînemeya kurdî" yan jî "sînemeya kurdîstanî."

**Kêşeyên sînemaya kurdî çi ne? Cudahiya di navbera sînemaya parçeyên de çi ne?**

Dema ku mirov cûdabûn di nava beşê Kurdistanê de bike, divê mirov bizane her beşek serbixwe fîlmên cuda çêdikin. Lê ne wisa ye. Tu dibînî mesela fîlmek ji aliyê derhênerekî kurdê Bakûr li Stenbolê hatiye keşandin, pêwîstiya wê fîlmê bi lîstîkvanekî kurdê Bakûr heye. Lê teknîsyana wê teknîsyenek kurdê Rojhilat e. Ji Sûrî jî heye. Prosesa çêkirina fîlmên kurdî bi taybet di 10 salên dawî de li Kurdistana Başûr bi xêra fînansmana sînemeya ku ji aliyê Wezareta Çandî ya Kurdistanê ve tê dayîn, tiştekî nû avakir. Gelek ferq û cudahiyên polîtîk, zimanî, çandî û bibêjim olî di navbera kurdên her parçeyan de hene. Edebiyata kûrdî heta qonaxekê alîgirên hereketê polîtîk in. Sînemaya kurdî bi taybetî li Başûr, li ser hemî ferq û cudahiyên civakî-dîrokî, civakî-polîtîk, olî û çandî di nav kurdan de nasnameyek nû ava kir. Ev nasname bi pêwîstiya karkirina teknîsyenên kurd in ku ji deverên cuda tên di fîlmek de cih digrin. Bo mînak di fîlma Hiner Saleem bi navê 'My Sweet Pepper Land' de ji Kurdistana Îran, Iraq, Tirkiyê, Sûrî û dîasporayê gelek kesan cih girtin. Hemû ji bo fîlmekî hatibûn gel hev. Helbet ferq û cudahi hene. Lê ev tiştekî baş e. Lê ev nayê kategorîzêkirin.

**Derhênerên kurd kîjan motifan bi kar tinin? Di vî warî de hevpariyeke heye?**

Ez ê li ser 3 derhêneran motîfên wan ê hevpar rave bikim. Şevket Emîn Korkî, Bahman Gobadî û Hiner Saleem. Mesela di fîlmên Hiner Saleem de motîfa herî girîng meseleya modernîteyê ye. Qelsbûna aborî yan çandî li Kurdistanê û xwestina wan ligel modernîte. Bo mînak di My Sweet Pepperland û Zero Kilometre de mijar ew e. Vê modernite yî di çarçoweya meseleya polîtîk a kurdî de tê nîqaşkirin li cem Hiner Saleem. Ev taybetmendiya wî ye. Herwiha manzaraya Kurdîstanê ji bo wî pir girîng e.

Di sînemaya Behman Gobadî de motîfên sereke sînor û parçebûna Kurdistanê ye. Bi awayek pir enteresan mijarê xwe li ser vê konteksê amade dike. Di fîlmê wî de peyzaja Kurdistanê pir girîng in Gobadî encamên fîzîkî yên şer nîşan dide. Bo mînak bi seqetbûna zarokan, seqetbûna erdnîgariyê. Di hemû fîlmên wî de mayîn hene.

"Em neçar in sînemaya kurdî bi nav bikin. Yanî dikare jê re bê gotin 'sînemaya kurdîstanî' jî. Dikare jê re bê gotin 'sînemeya kurdan' jî. Bes kategorîzekirina sînemaya kurdî pêwîstiyek girîng e û heqê jî. Li hemû dinyayê binerin gelên wekî ermenî, roman ku li dîasporêyê dijîn, sînemaya wan jî heye. Hewceyê sînemaya kurdî bê penasekirin."

Şevket Emîn Korkî 3 fîlm çêkirine. Gobadî û Saleem li dîasporayê dijîn. Nêrîna Korkî nêrînek navxweyî ye. Her 3 derhêner jî derbarê mijarên encamên fîzîkî yên şer, legerîna nasnemeyê de fîlman çêdikin. Di fîlmên Korkî de xwe parastin yanî kurdewarî heye. Bikaranîna mijarên polîtîk, hevparî ya sînemaya kurdî ye.

**Bandora proseya çareseriyê li ser sînemaya kurdî ji çêbû?**

Prosesa çareseriyê bandorek êrênî li ser sînemaya kurdî kir. Di 10 salên dawî de gelek derhênerên kurd projeyên baş çêkirin. Ji Wezareta Çandiniyê Tirkiyê, karibûn pere wergirin. Sedema duyem jî ji bo hunerê aştî herdem çêtire. Yanî huner aştîxwaz e û bi vî awayî pirtir pêş ve diçe. Fîlmên ku li Başûr dihatin çêkirin, baştir bûn. Ew nakokiyên polîtîk piçek kêm bûbû, ji ber hindê sînemaya kurdî ber bi pêşveçûnê ve diçû. Bo mînak piştî bi destpêkirina şer, hem ji aliyê polîtîk û derûnnasî ve hem jî ji aliyê aborî ve hem li Bakûr û hem li Başûr sînema kurdî ketiye nav krîzek mezin.

**Ji bo çi sînemaya kurdî zêde berhemdar nîne? Ji bo çi kesekî ji Yılmaz Güney zêdetir nake?**

Rola Yılmaz Güney di peydabûna sînemaya kûrdî de gelekî mezin e. Yılmaz Güney sebebê çêkirina sînemeya kurdî ye. Di hemû fîlmên kurdan da li Başûr, Bakûr, Sûriyê de behsa Yılmaz Güney tê kirin. Fîlmên kurdî pir in. Kurdên Bakûr, Başûr, Rojhilat û Rojava fîlmên ku li deverên hatine çêkirin, wek fîlmên kurdan nanasin. Bi sedan derhênerên kurd hene û li dîasporayê dijîn ku haya kurdên Bakûr ji wan nîne. Fîlmên kurdî pir in, ne kêm in. Li festîvalan xelatên baş werdigrin. Lê problem çi ye? Ji ber ku fîlmên kurdî di bin banê saziyeke de nehatine çêkirin û bazarek navxweyiya sînemaya kurdî nîne, em hemû fîlmên kurdî nabînin. Em nikarin bigehin fîlmên kurdî. Kurd nanasin û ji ber vê jî em difikirin ku fîlmên kurdî kêm in. Sedemên kêşeyên sektorê jî hene.

**Sedema betalbûna Festîvala Fîlman a Duhokê çi bû?**

Sedema biryara betalkirina Festîvala Duhokê, qeyrana aborî bû. Ji ber ku hikûmeta Kurdistanê çend sal in di krîzê de ye, gelek projeyan fîlman nehatine çêkirin. Festval jî yek ji wan e. Gelek aktîviyên çandî hatin betalkirin. Sedema din krîza polîtîk e. Kurdistan di şer de ye. Sala par Festîvala Duhokê hat çêkirin. Ligel qeyranê, biryar hat dayîn ku festîval dê bê lidarxistin. Gelek kesên ku par tevli festîvalê bûn, daxwaz ji Hikûmeta Kurdistanê kirin ku ew festîval neyê betalkirin. Ew festîvalek profesyonel e. Rastî gel kurd eleqek pir mezin nîşana fîlmên kurdî didin.

